HERDEM RASTÎ
# BasNûçe
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 86 18 - 24 Çile 2016 basnuce.com
ISSN 2148-5305



ORTADOĞU SİNEMA AKADEMİSİ DERNEĞİ

## Mîratên mirovahiyê bi kurdî

R16



Piştî qirnek tarî, li asoyê ronahiya serxwebûnê

# Xwa hafiz Sykes – Picot!



Peymana ku di 1916'an de bi mebesta di navbera Brîtanya, Fransa û Rûsya de parvekirina Rojhilata Navîn pêk hat, bû dojeha gelên herêmê. Ev peymana ku 100 sal e bûye qasid ku di navbera ereb, tirk, fars, mesîhî, cihû, sûryan, ermen, sunne û şîa dijminahiyên mezin peyda bibin, piştî temamkirina qirna xwe ber bi têkçûnê ve diçe. Li HRK'ê, gelê Kurdistanê, wê bi referandûma serxwebûnê têkçûna nîzama Sykes Picotê jî bidawî bîne.

Ev peymana ku bi mebesta metîngeriya dewlemendiyên hêrêmê ereban dabeşî 22 dewletan û Kurdistan jî di nav çar dewletan de parve dike, îro li Iraq û Sûriyeyê ji alî kurdan ve hatiye betalkirin. Gelê kurd, kirasê nîzama ku Fransa û Brîtanya 100 sal berê li herêmê kiribû dirrand û ew qedera ku bi Sykes Picotê danîbûn pêş Rojhilata Navîn diguherîne.

R02-3



Dr. Asso Hasanzadeh:

## Hemû hêmanên dewletbûnê hene

Di hiqûqa navdewletî de çi ji me re pêwîst e? Ji bo dewletbûyînê pêdawîsti bi sê hêman yan jî elementan heye. Divê her sê element li hev kom bibin. Yek xak e, yek xelk e,ya din jî hikûmet e.

R08-9

Rojava:

## Kurd, wê tevlî Cenevreyê bibin

R07

## 'Kurmanckî û kirmanckî yewbînî ra nêzdî yê'

R12

## Kurdî jî tevlî TED-Ed'ê bû

R15



Mesrûr Barzanî:

## Arîşe ji DAIŞ'ê mezintire

Musteşarê Asayîşa HRK'ê Barzanî, hînterlanda pirsgirêka Iraq û kurdan destnîşan kir û anî ziman ku pirsgirêk tenê şerê ku li dij DAIŞ'ê tê kirin nîne, ev şer bixwe jî encameke vê pirsgirêka dîrokî ye û pêwîst e çareseriyeke mayînde bê dîtin.

R04

# Di sedsaliya Sykes – Picot de

Kalê Badî / Siwar Bedirxan

Peymana Sykes - Picot ku di 1916'an de bi mebesta di navbera Brîtanya, Fransa û Rûsya de parvekirina Rojhilata Navîn pêk hat, bû dojeha gelên herêmê. Ev peymana ku 100 sal e bûye qasid ku di navbera ereb, tirk, fars, mesîhî, cihû, sûryan, ermen, sunne û şîa dijminahiyên mezin peyda bibin, piştî temamkirina esra xwe ber bi têkçûnê ve diçe. Li Herêma Kurdistanê, gelê Kurdistanê, wê bi referandûma serxwebûnê têkçûna nîzama Sykes Picotê jî hilbijêre.

Peymana ku bi mebesta metîngeriya dewlemendiyên hêrêmê ereban dabeşî 22 dewletan û Kurdistan jî di nav çar dewletan de parve dike, îro li Iraq û Sûriyeyê ji alî kurdan ve hatiye betalkirin. Gelê kurd, kirasê nîzama ku Fransa û Brîtanya 100 sal berê li herêmê kiribû dirrand û ew qedera ku bi Sykes Picotê danîbûn pêş Rojhilata Navîn diguherîne.

Gelê kurd nîzama ku Fransa û Brîtanya 100 sal berê li herêmê saz kiribû şikand û qedera ku bi Sykes Picotê danîbûn pêş Rojhilata Navîn diguherîne. Ev peymana ku di 1916'an de bi mebesta di navbera Brîtanya, Fransa û Rûsya de parvekirina Rojhilata Navîn pêk hat, bû dojeha gelên herêmê. Sykes Picota ku bi mebesta metîngeriya dewlemendiyên hêrêmê ereban dabeşî 22 dewletan û Kurdistan jî di nav çar dewletan de parve dike, îro li Iraq û Sûriyeyê ji alî kurdan ve hatiye betalkirin.

Dema ku rûpela dîrokê 16'ê Çileya 1916'an nîşan dida, ku Şerê Yekem Cîhanê dom dikir û serkeftina tifaqa Brîtanya û Frensa mîsoger nebibû, Peymana Sykes Picot tê îmzekirin. Di 1917'an de piştî ku li Yekîtiya Sovyetan Şoreşa Cotmehê pêk hat, Yekîtî ango bi navê îroyîn Rûsya ji vê peymanê vekişiya û vê peymana nepenî ji raya giştî ya dinyayê re aşkere kir. Sykes Picota ku 100 salan li dû xwe hişt, ji alî dîroknasan ve wek 'nîzama nû' ya ku sînorên Rojhilata Navîn diyar dike tê binavkirin. Kurd, vê peymanê wek qasidê parçebûna xwe dibînin û 100 salin ji bo dewletbûnê têdikoşin. Para ereban jî bû 22 dewletên ku ji alî dîktator û xanedanan ve têne birêvebirin û bi hev re di rikberiyê de ne. Peymana Sykes Picot ku wek maka pevçûn û çanda dijberî ku 100 salin li Rojhilata Navîn dom dikin tê nîşandan, metna esasî ya sedemên diyarkirina sînorên niha ye. Ev peyman, ne tenê ji bo kurdan, ji bo hemû gelên Rojhilata Navîn, bûye navê mirin û talanê. Nûser û akademîsyenên ku di derbarê vê peymanê de ramanên xwe bi BasNûçeyê re parve kirin diyar kirin ku di dema niha de Sykes Picot, ji alî kurdan ve hatiye betalkirin û bi saya tekoşîna gelê kurd êdî dawiya vê nîzamê nêzîk bûye.






## 'Sykes - Picot têk çûye, lê yekîtî û aborî pêwîst e'

Pisporê hiqûqê û şîrovekarê siyasî Nesîh Heme Huseyn jî di derbarê sedsaliya Peymana Sykes - Picot de anî ziman ku ev peymana ku ji bo kurdan nexşeya Rojhilata Navîn bi şêweyekî ne mirovî diyar kiribû û bêtir kurd bûbûn qurbanên wê, niha wek fermî hê bidome jî, li gel DYA, Brîtanya û Fransa, Rûsyaya ku hewl dide wek dema Yekîtiya Sovyet niha li herêmê rol werbigire jî, êdî dizane ku ji aliyê kurdan ve ev peyman têk çûye. Huseyn diyar kir ku ji bo kurdan asteng an jî derfeta herî mezin dîsa kurd in û got: "Dû pêwîstiyên kurdan hene. Yek jê yekîtî û ya din jî hêza aborî ye. Eger bi vîna parastina Kobanê kurd di warê stratejiya leşkerî de ji bo destkeftiyên bala li ser xeteke niştimanî hemaheng bibin, ev yek wê bandora xwe li siyaseta kurd jî bike û wê tu hêzeke din nikaribe li pêş serxwebûna kurdan raweste. Ya din jî hêza aborî ye. Niha li Herêma Kurdistanê qeyraneke mezin a aborî heye û ger ku kurd bi rêbazên baş siyaseta aboriya xwe birêve bibin serxwebûna Kurdistanê wê demê pêkan dibe. Ev herdû xal pêk bên ne Bexda û ne jî dewleteke din nikarin Sykes - Picotê ji nû ve vejînin"

## 'Dewletên Sykes - Picot îro bo azadiya kurdan razî bûne'

Berdevkê Yekgirtûyî Îslamî Ebûbekir Elî Karwan di derbarê 100. Salvegera Peymana Sykes - Picot de anî ziman ku ev peymana ku li ser têkbirin û parvekirina Kurdistanê pêk hatiye, bi têkçûna rejîma Saddam û azadbûna Başûrê Kurdistanê şikesta xwe ya pêşî xwariye, lê belê piştî şerê navxweyî yê Sûriyeyê ku rêxistineke hov a wek DAIŞ'ê afirandiye û bi şerê wê yê li Kurdistanê re Sykes - Picotê şikesta duyem a mezin ku êdî derfetên pêkhatina wê nemane xwariye. Karwan got: "Ev peymana ku kurdan kirî ye qurbanên xwe, dîsa bi qurbanîdayîna kurdan têk çûye. Kurdan li Başûr û Rojava bi bedêlên giran destkeftiyên mezin bi dest xistine. Li Rojava qadeke nû ya mezin ketiye destên kurdan û li Başûr bi destxistina deverên bi nakok û kolandina xendekên niha sînorê Başûrê Kurdistanê destnîşan kirine" Ebûbekir Karwan her wiha diyar kir êdî ew dewletên mezin yên ku vê peymanê pêk anîn jî ji azadiya kurdan re razî bûne û bi helwesta pêkanîna referandûma serxwebûnê re wê kurd pengaveke mezin a serxwebûnê pêk bînin.

## 'Kurd bêçar in yekdengbin'

Berpirsê PDK'ê yê Mûsilê Seîd Memûzînî jî di derbarê 100. Salvegera Peymana Sykes Pîcot û hewla serxwebûnê ya Herêma Kurdistanê de pêkanînên Sykes - Picotê ku li ser dabeşkirina Kurdistanê hatibû sazkirin wek pêkanînên pir zalimane destnîşan kir û anî ziman ku ev peyman ji destpêkê ve mehkûmê têkçûnê bûye û têkçûna wê ya piştî sed salan, têkçûneke derengmayî ye. Memûzînî got: "Geşedanên herêmê yên wek şerê DAIŞ'ê û li gel hatina hemû hêzên mezin ên dinyayê, hatina Rûsya jî li Rojhilata Navîn guherîneke mezin ferz dike. Di nav vê hengameyê de divê kurd bi berpirsyariyeke dîrokî tevbigerin û ji bo careke din kurd nebin qurbaniyên siyasetên mezin, divê mala xwe yekdeng bikin û bi hêza xwe bawer bikin. Ez bawer dikim ku wê kurd careke din nekevin dafikên siyasetên mezin û ew ê ev car serxwebûna xwe bi dest bixin" Memûzînî di derbarê referanduma serxwebûnê û yekdengkirina mala kurd de jî anî ziman ku wê tu aliyên kurd nikaribin li dijî vê fersenda dîrokî rawestin û wê piştgirî bidine vê pêvajoyê.

## 'Sykes - Picot hîn jî berdewam e'

Serokê Beşa Dîrokê ya Zanîngeha Slêmanî Dr. Ako Şiwanî jî di derbarê babetê de ragihand ku her çend piştî destpêka şerê DAIŞ'ê li Rojhilata Navîn guherînên mezin pêk hatibin jî Peymana Sykes - Picotê wek fermî têk neçûye û berdewam e. Şiwanî diyar kir ku ji bo têkçûna vê peymanê berî her tiştî divê li qadê mercên ku ji vê peymanê afirîne bi tevahî biguherin û ew dewletên ku vê peymanê pêk anîne bi fermî ragihînin ku êdî tu hukmê vê peymanê nemaye. Di derbarê lêrasthatina hewla referandûma serxwebûnê û 100. Salvegera vê peymanê de jî Dr. Ako Şiwanî anî ziman ku hemû gelê kurd û bi taybetî yê Başûrê Kurdistanê dixwaze ku ji hewla ragihandina serxwebûna Kurdistanê bawer bike, lê belê ji ber pêwendiyên Herêma Kurdistanê û Tirkiyeyê ew gumanbar in. Şiwanî got: "Li Başûr aliyên ku bûne sedemê qeyrana siyasi, niha dest bi hewldanên çareserkirina qeyranê kirine. Ev helwest ne cihê baweriyê ye, çimku ji bo çareseriyê beriya lihevkirina hêzên siyasî divê mercên ku qeyranê afirandine ji holê bêne rakirin û dûre hemahengiya siyasî pêk bê"

# e rojeva kurdan serxwebûn e






Ebûbekir Elî Karwan


Kemal Sido


Nesîh Heme Huseyn


Seîd Memûzînî


Hamid Derbendî

**'Mala kurd yek be tu kes nikare bibe asteng'**

Berpirsê Pêwendiyên Giştî yê RHK'ê Hamid Derbendî jî balê kêşa ser êş û azarên ku kurdan ji ber Peymana Sykes - Picotê kêşane û anî ziman ku êdî RHK'ê û Serokê wê Mesûd Barzanî, wê careke din destûrê nedin ku kurd tûşî van êş û azar û enfalan bibin. Derbendî 100. salvegera vê peymanê destnîşan kir û got: “Di sedsaliya vê peymanê de hewldana kurdan a serxwebûnê şayanî pesindayînê ye. Hevsengiya dinyayê guherî ye û ketiye rewşeke ku ji kurdan re alîkar e ku kurd serxwebûna xwe ragihînin. Wek hemû neferên kurd xewna Cenabê Serokê Herêmê Mesûd Barzanî jî serxwebûna Kurdistanê ye û ji mêj ve ye li ser ragihandina serxwebûna Kurdistanê kar dike. Hêviya me ew e ku di 100 saliya vê peymanê de kurd di referandûmê de dengê xwe ji bo serxwebûnê bilind bikin û vê daxwaza xwe ji hemû dinyayê re nîşan bide.” Derbendî yekdengiya mala kurd wek erkekî zarûrî destnîşan kir û got: “Ger ku mala kurd yekdeng be tu kes nikare ji azadiya kurdan re bibe asteng”

**'Divê kurd arîşeyên navxweyî çareser bikin'**

Şêwirmendê Komeleya Parastina Mafên Kêmnetewên Cihanê (GFBV) Dr. Kamal Sido, jî da zanîn ku bi peydabûna DAIŞ'ê ya herêmê, Peymana Sykes - Picot dîsa hatiye rojevê lê belê, dema mirov li dîrokê dinere dizane ku ev sînorên heyî ne yê Sykes - Picotê ne. Kamal Sido ragihand ku bi avabûna Komara Tirkiyê, Peymanê Sevr û Lozanê sînorên Sykes - Picotê ji holê rakirine û sînorên heyî bi wan peymanên navborî hatine danîn. Her wiha daxuyand ku sînorên Kurdistanê jî û wiha axivî:”Bi Peymana Sykes - Picot welatê kurdan jî bû çar parçe. Berê du parçe bûn, di navbera Îran û Tirkiyê de. Dû re bû çar parçe. Irak û Sûriye jî ket nava wan. Hêviya kurdan ew e ku welatê xwe bikin yek. Lê belê ez bawer nakim ku kurd karibin bi hevre kar bikin. Faktorên derve hene. Faktorên navxweyî hene.” Li hêla din Kamal Sîdo amaje bi wê yekê jî kir ku mimkûne ku li Başûrê Kurdistanê bibe dewlet û wiha got: “Belkî rênedin kurdan ku dewleteke merkezî ava bikin, belkî li Kurdistana Iraqê dewletek ava bibe. Niha li Rojava tiştekî diyar tuneye. Di vê demê de divê kurd bêtir kar bikin û kêşeyên navxweyî çareser bikin. Niha Kurdistana Iraqê ji serxwebûnê re amadeye lê belê arîşeyên navxweyî hene. Divê wan arîşeyan çareser bikin.”

**'Divê kurd doza dewletê bikin'**

Rojnameger û Endamê Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) Şoreş Golkar jî bal kêşa ser geşedanên piştî Peymana Sykes - Picotê û da zanîn ku ji ber Peymana Sykes - Picotê û peymanên piştî wê Kurdistan hat parçekirin û xelkê Kurdistanê jî ji hev hat dûr xistin. Her wiha Golkar daxuyand ku her çend kurd xwedî gelheyeke mezin jî bin heta niha kurd nebûne xwedî dewlet û gelek arîşe dibin avanebûna dewleteke kurdî. Golkar daxuyand ku konjonktura navdewletî û hin partiyên siyasî ji avabûna dewleta Kurdistanê re ne amadene û wiha axivî:” Bi Pemana Sykes - Picot Kurdistan bû çar parçe. Ji bilî Sykes - Picot peymanên weke Lozan û Sevrê hatin dûristkirin. Di nava gelên bê dewlet de gelê kurd xwedî gelheyeke qerebalix e. Divê sedalê de, ji kurdan re dewlet divê. Mimkûne ku îro dinya ji dewleteke kurdan re amade nebe. Lê belê divê kurd doza dewletê bikin. Hin partiyên kurdan dijî dewletê derdikevin.” Li hêla din Şoreş Golkar da zanîn ku rikberiya li Rojhilata Navîn deriyekî dîrokî ji kurdan re vekiriye ku bigihên xeyala xwe ya dîrokî û dewleteke ava bikin. Golkar her wiha ragihand ku rêeveberiya Rojavayê Kurdistanê jî gelekî giring e û hewcedariya kurdan bi wê yekê heye ku destkeftiyên rêveberî biparêzin.

**Serokê Saziya Mafê Mirovan a Kobanê Kemal: Peymaneke nû tê ferzkirin**

Hiqûqnas û Serokê Saziya Mafê Mirovan a Kobanê Biradost Kemal jî eşkere kir ku beriya bi sedsalî Fransa û Brîtanya ji bo Rojhilata Navîn li hev parvekirine û Kurdistan jî di wê serdemê de ji aliyê herdu welatan hatiye parçekirin. Her wiha Kemal amaje bi wê yekê jî kir ku geşedanên herî dawî yê li Rojhilata Navîn destnîşaniyê bi peymaneke nû dikin û wiha domand: “Berpirsyarê siyasî yê kurdan Mesud Barzanî got “Îro em kurd Sykes - Picota nû bi xwîna xwe datînin' îro nexşeya Peymana Sykes - Picotê qediyaye. Îro hewldan hene ku Sykes - Picota nû were danîn. Îro em bendewarê wê yekê ne gelê ew ê heqê xwe hebe yan jî tunebe? Heta siyasiyên kurdan û berpirsyarên kurdan wê karibin mafekî ji kurdan re peyda bikin lê na? Ez bawerim ew yek ew ê pêk were.”Di berdewamiya axaftina xwe jî de hiqûqnas Kemal, derbirî ku li Bakur Başûr û Rojavayê Kurdistanê siyasetmedarên kurdan danûstenin bi welatên mezin ê cihanê re danîne û di warê çarenivîsa kurdan de hin gavên di berjewendiya kurdan de biavêjin. Kemal axaftina xwe wiha bi dawî kir: “Îroj ew nexşeya nû Sykes - Picotê datîne? Êdî dora almanya yê. Em kurd me rêya xwe bi dewletên mezin re çêkiriye. Danûstendinên me bi DYA'yê re biEwropa re jî heye. Em bi xwe dibînin êdî wek li Rojavayê Kurdistanê li Başûrê Kurdistanê li Bakurê Kurdistanê danûstendinên me bi van welatan re hene.

**'Divê kurd li nasnameya xwe xwedî derkevin'**

Akademîsyen û Rojhilatnas Omid Babekhani jî derbirî ku Seykes Picot bi armanca dagirkeriya Rojhilata Navîn di navbera Brîtanya û Fransayê de durist bû û ji ber erdnîgariya xwe hin herêmên Kurdistanê jî ji aliye her du welatan li hev hatibû parvekirin û çarenûsa Kurdistanê di sedsala 20'an de ji aliyê dewletên emperyal ê wê demê hatibû tayînkirin. Li hêla din Babekhani eşkere kir ku geşedanen mezhebî yên li herêmê û hebûna DAIŞ'ê jî rê li ber hin peymanên din vedike û divê haya kurdan ji wan hebe û nekevin nava wan rikberiyên Rojhilata Navîn. Babekhani, li hêla din jî da zanîn ku Rûsya û DYA'yê hezên mezin ê sedsala 21'ê ne û egera wê yekê heye ku ew herdu dewlet ji bo berjewendiyên xwe hin polîtîkayan li ser herêmê ferz bikin û ev yek jî zirarê bide kurdan. Babekhani, bal kişand ser siyaseta kurdan jî û wiha axivî: Gorankariya li herêmê pêkte di berjewendiya kurdan deye. Lê belê divê kurd li destkeftiyên xwe xwedî derkevin û bername û stratejiyên xwe li ser herêmê ferz bikin. Eger di vê sedsalê jî de kurd li nasnameya xwe û li xaka xwe xwedî dernekevin ew ê dîsa weke berê di bin dagirkeriya ereb, fars, tirkan de bimînin.”

## Li RHK'ê reformên aborî û burokratîk

# Beriya referandûmê yekîtî

Kalê Badî

Li Herema Kurdistanê, ji layekî ji bo amadekariyên referandûma serxwebûnê xebatên goncavkirina zemîna siyasî dom dikin, ji layê din ve di serdanên dîplomatîk ên Hewlêrê de dîplomasiya peydakirina piştgiriya navnetewî tê meşandin. Di xebatên aştkirina qeyrana siyasî ya RHK'ê de helwesta Goran hê diyar nebûbe jî civînên PDK û YNK'ê bi xweşbînî didomin û ev yek ji bo yekîtiya navxweyî ya ku divê beriya ragihandina serxwebûnê pêk bê hevîyan geş dike. Li aliyê din jî di hevdîtinên Rawêjkarê Asayîşê Mesrûr Barzanî yên li gel şandeyên dîplomatîk de pêwîstiyên şerê li dij DAIŞ'ê têne destnîşankirin û biryardariya kurdan a serxwebûnê tê ragihandin. Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî jî di hevdîtinên xwe yên dîplomatîk de balê dikêşîne ser xeteriya rikberiya mezhebî û di derbarê vê babetê de gumanên xwe yên piştî DAIŞ'ê radigihîne.

Li gel ku bi kêmbûna bûhayê neftê re nirxê dînar li hember dolar kêm dibe jî, ji bo pêşîlêgirtina qeyrana aborî reformên nû û berfireh hatin destpêkirin. Tê payîn ku di demeke nêz de wê bandora erênî ya li ser rewşa aborî ya reformên ku bi mebesta pirsgirêkên wek; cot-mûçetiyê, deynên şirketên ku ji dewletê kredî wergirtineû îsrafa enerjiyê çareser bike hatine destpêkirin, bê dîtin.

### Ber bi yekîtiya netewî ve

Piştî fermana referandûma serxwebûnê ya Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî, bi lezbûna lêgerîna tifaqa netewî re, di heman demê de xebatên kolana xendeqên ku tê angaştin sînorê Kurdistanê diyar dike, hewla reformê ya ji bo çareseriya qeyrana aborî û xebatên dîplomasiyê jî bi ruhekî niştimanî jî didomin. Li gel hemû van geşedanan daxuyaniyên biryardariya pêkanîna referandûma serxwebûnê ya nûnerên partiyên siyasî jî, li Kurdistanê hêviya yekîtiya netewî geş dike.

Endamê Polîtburoya PDK'ê Arif Ruştî, daxuyand ku li Bexdayê hin derdor li dij RHK'ê dest bi hewlên dijminane kirine, ev ferasetên çewt û nexêr nikarin mafê xwezayî yê diyarkirina çarenûsa xwe ya gelê kurd asteng bikin, li dij van ferasetan divê hemû partiyên siyasî yên Kurdistanî xwe ji bo qonaxa yekem a serxwebûnê ango ji referandûmê re amade bikin. Endamê Polîtburoya YNK'ê Herêm Kemal Axa jî ragihand ku dewletên Ewropa piştgirî didin damezirandina dewleta Kurdistanê, dijminên kurd, di demên xwe yên herî qels de ne, ji ber vê yekê divê ev fersenda dîrokî ji dest neçe û referandûma serxwebûnê tafilê bê kirin.

Berdevkê Serokê Koma Bizotneweyî Îslamî Şiwan Qeladizeyî anî ziman ku hemû partî piştgirî didine referandûma serxwebûnê û xwest ku ev fersenda dîrokî ji dest neçe. Berdevkê Yekgirtûyî Îslamî Ebûbekir Elî Karwan jî bi ser BasNûçeyê ragihand ku di 100 saliya Peymana Sykes Picotê de ev peyman ji alî kurdan ve hatiye betalkirin û divê betalkirina vê peymanê bi serxwebûna Kurdistanê bê xelatkirin. Karwan ji bo serxwebûnê jî grîngiya yekîtiya netewî destnîşan kir û got: "Ji bo serxwebûnê yekîtî ferz e"Ji bilî Tevgera Goran hemû nûnerên partiyên siyasî di derbarê yekîtiya netewî û referandûmê de heman biryardariyê nîşan didin û piştgirî didine hewla reformê ya ji bo çareserkirina qeyrana aborî.

Ji alî din ve Serokê Lijneya Bala ya Hilbijartinê Bilind Hindirên Mihemed,detayên karûbarên referandûmê de ragihand ku heta niha Komîsyona Amadekar a Serxwebûna Kurdistanê(KASK) ji bo destpêkirina xebatên referandûmê serî li wan nedaye, ger ku ev serlêdan pêk bê, bêyî ku ew ji Bexdayê destûr werbigirin, ew dikarin piştî maweya 280 rojan referandûmê pêk bînin. Hindirên da zanîn ku ji ber tenê kaxezên ku nîşaneyên erê û na têne amadekirin, referandûm ji hilbijartinên parlamentoyê pir hêsantir e û ger ku KASK serdanê bike ew ê tafilê dest bi xebatên amadekariya referandûmê bikin.

### Civînên PDK û YNK'ê erênî ne

Civînên partiyên siyasî yên ku bi daxwaza Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, bi mebesta çareserkirina qeyranên siyasî û aborî hefteya çûyî destpêkirin û vê hefteyê dom kirin, hêviya yekîtiyê geş kirin. Hate ragihandin ku di civînên di navbera PDK û YNK'ê de vê hefteya çûyî destpê kirin û roja Sêşemê dom kirin de aliyên siyasî nêzîkî hemahengiyeke siyasî bûne. Li gor çavdêrên siyasî yên Silêmanî, YNK, bi PDK'ê re nêzîkî konsensuseke ye. Piştî civîna ku di navbera şandeya PDK'ê ya di bin serokatiya Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî û ya YNK'ê ya di bin serokatiya Berpirsê Polîtburoya YNK'ê Mele Bextiyar de pêk hat de Bextiyar ragihand ku civîn erênî encam daye, di civînê de li ser 5 pêşniyazên ku YNK'ê di civîna hefteya çûyî de pêşkêşî PDK'ê kirî ye dîsa hatine gotûbêjkirin û di vê civînê de alî, li ser van pêşniyazan nêzîkî konsensusê bûne.



Serokê RHK'ê Barzanî:

## Piştî DAIŞ'ê parastina pêkhateyên cuda

RHK'ê, bi lêgerîna yekîtiya re ji aliyekî ve bi kolana xendekan pêdiviyên parastinê bi cih tîne û ji aliyê din ve jî xebatên dîplomasiyê bê navber didomîne. Di vê hefteya ku dîsa çûnûhatên dîplomasî yên li Hewlêrê zêde bûn de Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî mêvanên grîng ên Ewropî pêşwazî kir. Barzanî, di serdana Cîgirê Serokwezîrê Hollenda Lodwijik Asscher û Wezîrê Bergiriyê Jeanine Hennis û şandiya li gel wan de di derbarê jinûve avadankirina wargehên ku piştî şikandina DAIŞ'ê wê azad bibin û pêdiviyên leşkerî yên Hêzên Pêşmerge de axivî. Di hevdîtinê de Barzanî, piştî têkbirina DAIŞ'ê, di rêvebirina Mûsil û wargehên din ên ku wê bêne rizgarkirin de pêwîstiya parastina mafê pêkhateyên etnîkî û olî destnîşan kir û da zanîn ku di êrîşên hewayî yên hevpeymaniya navnetewî yên ku bi Pêşmerge re bi hemahengî têne pêkanîn de sivîl tu carî nebûne armanc. Li ser navê şandeyê Lodwijik Asscher jî ji ber ku malevaniya bi milyonan penaberan kirine, Serokê RHK'ê Barzanî pîroz kir û da zanîn ku wê piştgiriya wan a ji bo Pêşmerge bidome.

Di hevdîtina serdana Cîgirê Wezîrê Bergiriyê Komara Çek Jakub Landoveski û şandeya li gel wî de jî Barzanî diyar kir ku ev şerê ku niha li herêmê didome ji ber rikberiya mezhebî destpê kirî ye û got: "Lê belê Kurd, wê nebin beşek ji vî şerê mezhebî. Lewre gelê Kurdistanê, xwedî çandeke giranbûha ya pêkvejiyan û xweşbîniyê ye" Di hevdîtinê de jî Jakub Landoveski jî anî ziman ku di şerê DAIŞ'ê de ew ê li pişta gelê kurd bin û ew ê di alîkariya leşkerî ya ji bo Pêşmerge de berdewam bin.

### Barzanî bersiv da nameya keça kurd Tara

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, bi nameyekê bersiv da xwendekara zanîngehê Tara Kirmanc Îzzet a ku li gel nameyeke watedar, tabloya Ala Kurdistanê ya ku bi navên Pêşmergeyên ku di şerê DAIŞ'ê de jiyana xwe ji dest dabûn hatibû nexşandin jê re şandibû. Barzanî di nameya xwe de anî ziman ku dildariya welat û gelê kurd a Keça Kurd Tara wî pir kêfxweş kirî ye û ji ber vê helwesta wê ya dilpak spasiya Tara kir. Barzanî di nameya xwe de wiha nivîsandiye: "Ciwanên Kurdistanê bi berxwedêriya ku bi rijandina xwîna xwe pêk anîne, bûne sembola pêlewaniyê û navê kurd li dinyayê belav kirine. Siberoja gelê me û welatê me ronak e. Ji bo dahatiya welatê me pêwîst e ciwanên wek te, pir bixwînin û xwe baş bigihînin. Di hemû jiyana te de ez ji te re serkeftin û xweşî hêvî dikim"

Bextiyar, li gel ku detayên wan aşkere neke jî, da zanîn ku ev 5 pêşniyazên YNK'ê di derbarê daxwazên hevpar ên aliyan ên di derbarê RHK'ê, Iraq, perçeyên din ên Kurdistan û Rojhilata Navîn de ne. Serokwezîr Nêçirvan Barzanî jî pêşniyazên YNK'ê piştrast kir, da zanîn ku wê ev pêşniyaz bêne nîqaşkirin û di civînên pêş de egerî heye ku bigihîjin hemahengiyeke siyasî.

Nêçirvan Barzanî, di derbarê kêmbûna buhayê neftê û bandora wê ya li ser kêmbûna nirxê dînar ê li hember dolar ku gihîştibû asta 1.27'an jî axivî, da zanîn ku ger kêmbûna buhayê neftê dom bike ev yek dikare maweya qeyrana aborî ya Herêmê hinekî dirêjtir bike, lê belê ew pêşbînî dikin ku di dawiya salê de rewş baştir bibe.

### Memûzînî: Hemû alî li ser serxwebûnê hembiryar in

Berpirsê PDK'ê yê Musilê Seîd Memûzînî di derbarê civînên PDK û YNK'ê de ji BasNûçeyê re ragihand ku li gel hemû cudahiyên ramanî yên partiyên siyasî jî, hemû partî di babeta referandûm û serxwebûnê de hemaheng in û jixwe armanca civînên ku didomin jî ew e ku di meşa ber bi referandûmê de peydakirina xalên hevbeş ên ku wê dikaribin ji referandûmê re zemîneke derfetdar peyda bike. Li ser pirsa me ya di derbarê naveroka civîna PDK û YNK'ê de jî Memûzînî ragihand ku piştî her dû alî li ser daxwazên hevbeş bigihîjin encamekê, wê naveroka van civînan jî bê ragihandin û dom kir: "Piştî ku her dû partî li ser xalên hevbeş li hev bikin, egerî heye ku Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, ji bo partiyên din jî beşdarî vê pêvajoyê bibin, bi hemû partiyên siyasî re civîneke piralî pêk bîne" Memûzînî diyar kir ku hemû partiyên siyasî li ser referandûm û serxwebûnê hemaheng in û got: "A grîng ew e ku di meşa ber bi referandûmê de nakokî û pirsgirêk dakevin asteke ku ji referandûmê re nebin asteng"

### Goran dikare hewlên xeter dûbare bike?

Çavdêrên siyasî yên Silêmanî radigihînin ku hewlên diyalogê yên ku ji nû ve destpê kirine li deverên din ên Kurdistanê bayeke xweşbîniyê rakiribe jî, di zemîna civakî ya Goran de rikberiya PDK'ê dom dike û hişyar dikin ku egerî heye di maweya mehekê de Goran dest bi hewleke nû ya protestoyî bike. Di van nirxandinan de tê gotin ku li ser vê rikberiya alîgirên Goran a ku di xwe de şopên dîrokî jî dihewîne de, wê helwesta Sekreterê Giştî yê Tevgera Goran Newşîrwan Mistefa ya piştî vegera Kurdistanê pir grîng be. Her wiha tê gotin ku di zêdebûna vê rikberiyê de bandora propanandaya Goran a ku goya 'Hikûmet bi zanebûn elektrîkê qut dike û mûçeyan karmendan nade' jî heye.

Ji alî din ve berpirsên Goran didin zanîn ku ew jî dîroka vegera Newşîrwan Mistefa nizanin. Berdevkê Tevgera Goran Şoreş Hecî ji BasNûçeyê re ragihand ku Newşîrwan Mistefa ji ber êşa pişta xwe li Ewropayê tedawî bûye û têra ku xebatên partiyê bimeşîne baş bûye, lê belê di derbarê dîroka vegera wî de di dest wan de agahî tune ne. Endamê Polîtburoya YNK'ê Şêx Cafer Mistefa ku li Ewropayê çûbû serdana Newşîrwan Mistefa, ragihand ku pirsgirêkên wî yên tendurustî nemane û di demeke nêz de ew ê bi pêşniyazên di derbarê çareserkirina qeyrana siyasî vegere Kurdistanê.

### Cebar Yawer: Sînorên siyasî bi xendekan nayê diyarkirin

Piştî ku Hêzên Pêşmerge li ser xeta sînorê Kurdistanê ku şerê DAIŞ'ê lê didome bi mebesta parastinê dest bi kolana xendekan kir, hin derdorên Bexdayê bi angaşta ku RHK'ê sînorê Kurdistanê ji Iraqê vediqetîne dest bi reşkirina Herêma Kurdistanê kirin. Di nav van nîqaşan de angaştên ku Pêşmerge li navçe û gundên nêzîkî sînorê Kurdistanê ji şêniyên van deveran dipirse ku 'hûn dixwazin beşdarî Kurdistanê bibin an Iraqê?' û li gor daxwaza wan ew navçe û gund, ya li derveyê xendekê dimînin yan jî li hundurê wê. Her çend berpirsên Pêşmerge ragihînin ku ev xendek di çarçoveya stratejiya parastinê de têne kolan jî angaştên wiha û reşkirin didomin.Fermandarê Liqa 70 ya Hêzên Pêşmerge Şêx Cafer Mistefa ragihand ku çawa du hêzên dijber di şer de li hember hev ji bo parastinê xendekan bikolin Pêşmerge jî di çarçoveya stratejiya pûçkirina êrîşên DAIŞ'ê de vê xendekê dikole û wê kolan berdewam be. Di derbarê babetê de Sekreterê Giştî yê Wezareta Pêşmerge Cebar Yawer ji BasNûçeyê re axivî. Yawer, kes û aliyên ku di vê babetê de RHK'ê sûcdar dikin wek nezanên karûbarên leşkerî nirxand û got: "Ger ku di derbarê stratejiyên leşkerî de hinek zanînên wan hebûna, wê zanibûna ku sînorên welatan bi xendekan ji hev nayêne veqetandin.Yawer da zanîn ku ji parlamena Iraqê hin kesan vê yekê wek veqetandina Kurdistanê têgihîştine aciz bûne û anî ziman ku nirxandinên wiha ne rast in.

### "Peşmerge ji operasyona Mûsilê re amade ye"

Cebar Yawer di derbarê di derbarê wargehên Kurdistan ku di destê DAIŞ'ê de mane de da zanîn ku Mûsil û hemû navçeyên wê, Rûmadî, Bellûce, Hewîce, Hana, Riyaz û hin navçeyên Kerkûkê hê jî di destê DAIŞ'ê de ne, lê belê ji van deveran tenê sê navçeyên Kurdistanê di dest wê de mane.

Piştî me gotina Serokwezîr Nêçîrvan Barzanî ya ku gotibû "Artêşa Iraqê ji operasyona Mûsilê re amade nîne" anî bîra wî û pirsa "Gelo Pêşmerge amade ye?" jê kir, Yawer da zanîn ku ji bo Artêşa Iraqê dikaribe xwe bigihîne Mûsilê, divê pêşî devera Ramadî ku gellek navçeyan dihundurîne ji dest DAIŞ'ê derxe û dom kir: "Bi vî awayî, li gel têrnekirina hêza wê, wek mercên fîzîkî jî Artêşa Iraqê ji operasyona Mûsilê re ne amade ye. Lê belê Pêşmerge, hem ji bakur hem jî ji rojava ve gihîştiye Mûsilê û ji operasyonê re amade ye.

Di derbarê referandûmê û erka Pêşmerge de jî Cebar Yawer diyar kir ku heta niha tu fermanek nehatiye dayîn, lê ger ku fermanek bê dayîn Pêşmerge wê hemû birpirsyariyên xwe yên aramiya referandûmê bi cih bîne. Di derbarê rewşa Şengalê de jî Yawer ragihand ku tîmên pispor ên pûçkirina bombeyan Şengalê ji kemîn û dafikên teqemenî paqij dikin û bi van xebatan re kêm be jî, hin malbat hêdî hêdî vedigerin Şengalê.

### Fermandarê Giştî General Mihemed: Bihostek axa Kurdistan jî ji DAIŞ'ê re namîne

Fermandarê Giştî yê Hêzên Pêşmerge General Cemal Mihemed, di derbarê rewşa sengerên şer û hêza êrîşkariya DAIŞ'ê de daxuyand ku bi saya hatina çekên giran, Pêşmerge DAIŞ'ê pir lawaz kirî ye û hêza DAIŞ'ê ya êrîşên mezin pêk bîne nemaye. General Mihemed, di dîdariya li gel BasNûçeyê de ragihand ku taybet li dij sengerên Xazirê amadekariyên DAIŞ'ê yên êrîşan hene, lê belê ji alî leşkerî ve ev ne pêkan e û got: "Êdî DAIŞ nikare bihostek jî ji axa Kurdistanê dagir bike, lewre Pêşmerge hemû bergiriyan kirî ye. Çekên ku Hêzên Hevpeyman dane Pêşmerge, di gellek pevçûnan de hatin ezmûnkirin û bandora wan a erênî hate dîtin" Mihemed dîrokê diyar neke jî da zanîn ku wê Pêşmerge li dij DAIŞ'ê dest bi operasyonan bike.

Navenda fînansa DAIŞ'ê hate tunekirin

Wezareta Parastinê ya DYA Pentagonê ragihand ku navenda fînansê ya li Mûsilê ya DAIŞ'ê bi dû bombeyên 900 tonan hatiye lêdan û bi milyonan pereyên wê hatiye tunekirin. Ajansa Asayîşa Kurdistan Parastinê jî ragihand ku di êrîşa asmanî ya hêzên hevpeyman a li navçeya Dûbîsa Kerkûkê de Berpirsê Leşkerî yê Kerkûkê yê DAIŞ'ê Ahmed Abdulah Hesen ku destê wî di gellek êrîşên terorî de hebû hatiye kuştin.

Ji alî din ve piştî ku DAIŞ'ê bi armanca êrîşeke pêk bîne hêzên xwe arasteyî Gundê Mizirî yê navçeya Hewîceya Kerkûkê kir, Yekîneyên Taybet ên Pêşmerge, li dij vê hêza DAIŞ'ê êrîşeke mezin pêk anî. Hate ragihandin ku piştî êrîşa Pêşmerge, liv û tevgera vê hêza DAIŞ'ê rawestiya ye.

### Reformên aborî û burokratîk

Li RHK'ê, li gel hewlên lihevkirinê yên siyasî, ji alî hukûmetê ve, bi mebesta çareserkirina qeyrana aborî hewla dûyem a reforman jî hate destpêkirin. Hate ragihandin ku ev pakêta reformê ya ku ji 21 xalan pêk tê û kêmkirina wezaretan, rawestandina israfa enerjiyê û hin xalên din ên grîng dihundurîne, ji alî Serokwezîr Nêçirvan Barzanî ve hatiye îmzekirin.

Li gor vê pakêtê Wezareta Hawirê û ya Şarediriyan, Wezareta Dadê û ya Mafê Mirovan û Wezareta Hilberîn û ya Xebatê dibin yek.

Hemwelatiyên ku ji dewletê cot-mûçe werdigirin êdî wê hêviya xwe ji yekî bibirin û ji bo betalkirina mûçeyekî xwe divê serî li şaxên Wezareta Darayî bidin. Ger ku serî lê nedin, dewlet dikare dest deyne ser mûçeyên wan ên salekî.

Karmend û esnafên ku ji bo projeyan pêk bînin ji dewletê kredî wergirtibûn, divê di maweya mehekê de deynê krediyên xwe bidin. Ger ku di maweya mehekê de deynê xwe nedin, dewlet dikare dest deyne ser sermiyanên wan ên ku di ber kredî de wek temînat nîşan dabûn an jî bifroşe.

Li Paytext Hewlêr, Slêmanî û Duhokê bi ser sê şirketan ve rafînegehên donê gazê têne damezirandin û bi vî awayî donê ku hemwelatî ji bo germkirin û sotemenî bikar tînin ji dêlva ku ji derve bê standin wê li Kurdistanê tê hilberîn.

Ji bo pêşîlêgirtina elektrîka kaçax û israfê wê lijneyeke lêkolîner bê damezirandin. B saya vê lijneyê wê bi tedarek elektrîkê bikar bînin.



## Mesrûr Barzanî: Arîşe ji DAIŞ'ê mezintir e

Di nav trafîka dîplomasiyê de Rawêjkarê Asayîşa Giştî ya RHK'ê Mesrûr Barzanî peyamên grîng dan berpirsên payebilind ên welatên rojava. Di hevdîtina bi Nûnerê Taybet ê Ewlehiyê yê Serokwezîrê Brîtanya General Tom Beckett û şandeya li gel wî de Mesrûr Barzanî, hînterlanda pirsgirêka Iraq û kurdan destnîşan kir û anî ziman ku pirsgirêk tenê şerê ku li dij DAIŞ'ê tê kirin nîne, ev şer bixwe jî encameke vê pirsgirêka dîrokî ye û pêwîste çareseriyeke mayînde bê dîtin. Barzanî, pêwîstiya plansaziyeke giştî ya dinyayê ya ji bo têkbirina DAIŞ'ê destnîşan kir û da zanîn ku divê welatên dinyayê di heman demê de ji bo pêdiviyên hêzên ku li bejahiyê li dij DAIŞ'ê şer dikin bêtir alîkariya wan bikin. Mesrûr Barzanî destnîşan kir ku Hêzên Pêşmerge, li gel bêderfetiyan jî li bejahiyê, li dij DAIŞ'ê bi lehengî şer dikin û diyar kir ku li gel hemû bêderfetî û qeyrana aborî jî RHK'ê,ji milyonan penaberan re malevaniyê dike. General Tom Beckett jî pesnê şarezayiya şer a Pêşmerge da, da zanîn ku kurd hem li Herêma Kurdistanê û hem li Rojava, li dij DAIŞ'ê şerrekî bêhempa kirin û got: "Ger ku kurdan û hêzên hevpeyman bi hev re tifaqê nekiribûna wê rewş pir xerabtir bûya. Lê belê di têkbirina DAIŞ'ê de bi taybet rola Pêşmerge pir grîng bû"

Rawêjkarê Asayîşa Giştî ya RHK'ê Mesrûr Barzanî di hevdîtinên li gel Serbalyozê Îtalya yê li Iraqê Marco Carnelos û Cîgirê Wezîrê Parastinê yê Komara Çek Jakub Landoveski û şandeya li gel wî de jî banga alîkariya serbazî ya ji bo Hêzên Pêşmerge kir.



## Li Rojava operasyona surprîz:
# Di ser Efrînê re ber bi Cerablûsê

Reyhan Akgün

Li Sûriye û Rojava,encamên civîna Cenevre III ya di 25'ê Çileyê de pêk were tê çaverêkirin. Li hêla din amaje li ser wê yekê heye ku hewldanên leşkeri yên DYA'yê û Rûsyayê bibin sedema qeyranên nû. Pevçûnên PYD'ê û hezên sûryanî Sotoro jî li Rojava bûn sedema aloziyan. Li hêla din jî angaşt li ser wê yekê heye ku hêzên kurddi herêma Efrînê re ji bo Cerablûsê operasyonek dane destpêkirin.

Encamên civîna Cenevre III'yê ku ew ê di 25'ê Çileyê de pêk were ji niha vê tê nîqaşkirin. Her wiha tê şîrovekirin ku Rayedarên DYA'yê û Rûsyayê li ser çareseriya qeyrana Sûriyê li hev kirine. Her çend herdu alî eşkere bikin ku lihevkirine jî, Rûsya li İdlibê baregahên muhalifên nêzîkî DYA'yê bordûman kir û wisa xwiya dike ku ew ê ev yek bibe sedema hin qeyranên dîtir. Medya Tirkiyê jî eşkere kir ku DYA'yê li Rojava baregeheke leşkeri datîne. Li gel van geşedanan rejima Sûriyê jî destûra wê yekê da ku Artêşa Rûsyayê beyî diyarkirina demekê dikarin li Sûriyê bimînin. Ev yek jî didin xwiya kirin ku ew ê çareserî ji bo bihareke din bê taloqkirin.

Şerê pekhateyan ê li Sûriyê heyî derbasî Rojava jî bû. Li Qamişlo di navbera hêzên sûryanî Sotoro û PYD'ê de pevçûnan rûda. Hat zanîn ku pevçûnên herdu aliyan çend rojan berdewam kiriye û piştî çend rojan pevçûn bi dawî bûne û ji bo rêgiriya pevçûnan tedbîr hatine stendin. Hêzên kurd ê ji aliyê Kobanê û Girêspî ber bi Cerablûs û Rakkayê ve diçin strateji guhertin û ji Efrînê ber bi Cerablûsê ve diherin. Her wiha hat zanîn ku bajarê Şewarxa yê stratejîk jî hatiye kontrolkirin.

### Li Qamişlo pevçûna PYD û Sotoro

Di encama êrîşa DAIŞ'ê ya di 30'ê Kanûna 2015'an li Qamişlo 18 kesan jiyana xwe ji dest da. Piştî wê êrîşa DAIŞ'ê rikberî di navbera pêkhateyê bajêr de rû da. Di navbera hêzên sûryanî Sotoro û Asayîşa PYD'ê de pevçûn derket. Serokê Federasyona Sûryaniyên Swêde Efram Yakub eşkere kir ku pevçûn ji ber avakirina herêma ewlehiyê di navbera herdu aliyan de derketiye û di encama pevçûnan de şervanekî Sotoro û 8 kurdan jiyana xwe ji dest daye. Rayedarên PYD'ê yê Qamişlo jî di derbarê pevçûnan de neaxivin û dan zanîn ku ew naxwazin wê bûyerê şîrovebikin.

### "Rejîm hewl dide pevçûn derkevin"

Rojnagemer Ciwan Nebi di derbarê geşedan û pevçûna li Qamişlo agahî dan rojnameya me BasNûçe'yê û da zanîn ku hin caran li nav taxan teqîn rû didin lê belê ew nabe şerê nav pêkhateyan. Di berdewamiya axaftina xwe de Nebi amaje bi wê yekê jî kir ku pekvejiyanake qedîm di navbera kurd û sûryaniyan de heye û wiha axivî: "Beriya sersalê li taxên sûryaniyan çend teqîn pêk hatin. Ew teqîn ji aliyê endamên DAIŞ'ê ve hatin kirin. Di wan teqînan de hemwelatiyên kurd û sûryanî jiyana xwe ji dest dan. Li hêla din Nebi pevçûna hêzên Sotoro yên sûryanî û Asayîşa PYD'ê jî bi bîr xist û wiha got:" Hêzên Sotoro xwestin dorûbera taxê bi keviran bigrin. Asayîşê jî ew yek qebûl nekir û di navbera wan de pevçûn derket. Pevçûnên bi şev derketin heta dane sibehê berdewam kirin. Ji ber pevçûnan kesekî sivîl û endamekî Sotoro jiyana xwe ji dest da. Rejima Sûriyê bi vê yekê dixwaze di navbera gelan de şer derxe û hebûna xwe li ser wan pevçûnan ava bike."

### Gelo DYA'yê baregeha leşkerî ava dike?

Li aliyê din tê ragihandin ku DYA li nêzîkî Balafirgeha Çandîniyê ya ku 190 km dikeve bakûrê Hesekê, dest bi lêkolînan kiriye ku baregeheke leşkerî ava bike. Ev demeke dirêje pisporên leşkerî yên DYA'yê perwerdeya leşkerî didin şervanê Hêzên Sûriyeya Demokratîk (HSD) û li herêmê bi cih bûne. Li gel vê yekê angaştên avakirina baregeheke leşkerî, bû sedema niqaşên nû. Çapemeniya Tirkiyê radigihîne ku wê baregeh li ser sînorê Tirkiye-Iraq-Rojava bê avakirin. Lê rayederên Rojava di derbarê angaşta avakirina baregeheke leşkerî ji BasNûçe'yê re axivîn û diyar kirin ku ev ne rast e. Hevseroka Kantona Efrînê Hêvî Mistefa, ji BasNûçe'yê re axivî û ev angaşt derewand in. Mistefa destnîşan kir ku di têkoşîna li hember DAIŞ'ê de, ji hemû alîkariyên ji wan re tên kirin kêfxweş in. Mistefa wiha got: "Ev tenê hin gotin in. Tê axaftin lê, di pratîkê de tiştek tune ye. Em hemû alîkariyên ku ji bo têkoşîna li hember teror û ji holê rakirina terorê têne kirin kêfxweşin. Her sê kantonên Rojava, bala sîyaseta cîhanê kişand ser xwe. Kordînasyona Rojava di qada navneteweyî de dîplomasiyê birêve dibe. Em di dîplomasiyê de jî nahêlên ku tu kes midaxeleyî karên me yên navxweyî bike."

### Hêvi Mistefa: Li Efrînê pirsgirêkên mezin rû didin

Ji destpêka şerê navxweyî ê Suriyeyê, Efrîn jî ket bin dorpêça rêxistinên Îslamî yên tundrew û şer û pevçûnên di navbera hêzên kurd û komên îslamî de didome. Li Efrînê ku bakûrê wê ji aliyê diwar û têlên ku Tirkiyeyê raçandî û başûr û rojavayê wê jî ji aliyê rêxistinên tundrew DAIŞ, El Nusra, Ehrar el Şam ve dibin dorpêçê de ye, pirsgirika peydakirina qûte destpêkir. Hêvî Mistefa di derbarê dorpêça li ser Efrînê jî bersivên BasNûçe'yê bersivand û ragihand ku ji ber şer, ambargo û dorpêçê, rewşa Efrînê ber bi nebaşiyê ve diçe. Mistefa di berdewamiya axaftina xwe de got ku sînorên Efrînê ji aliyê Tirkiye û Ehrar El Şam û El Nusrayê ve hatine girtin û destnîşan kir ev şer û dorpêç ji bo mirovahiyê şermeke mezin e. Mistefa axaftina xwe wiha domand: "Hêzên me bersiva êrişan didin. Gel di nava astengiyên mezin de hewl dide bijî. Di aliyê derman û alîkariyên mirovî de pirsgirêkên mezin rû didin." Hevseroka Meclîsa Zagonsaz a Kobanê Fewziya Ebdo ji BasNûçe'yê re axivî û balkişand ser dorpêça li ser Efrînê. Ebdo amaje bi wê yekê kir ku dixwazin têkevin Efrînê û di ser Efrînê re Helebê bidestbixin. Ebdo wiha pê de çû: "Armanca wan a sereke ew e ku di ser Efrînê re hemû herêmê bidest bixin. Dixwazin kontrolên riyan bidest bixin û bi tundiyê gel radest bigirin." Ebdo di dawiya axaftina xwe de anî ziman ku digel hêzên herêmî, hemû hêzên cîhanê stratejiya xwe li ser Rojava û Sûriyê ferz dikin.

### Li herêma Efrînê tevgera leşkerî

Pêşveçûyîna hêzên kurd a ji bo kontrolkirina Cerablûs – Ezazê ku dikeve navbera Efrîn û Kobanê didome. Di destpêka sala 2016'an de hêzên kurd ji bo rizgarkirina Bendava Tişrînê operasyon lidarxistibû û riyên di navbera Reqqa û Cerablûsê kontrol kiribûn. Bi kontrolkirina Bendava Tişrîn û van riyan, têkiliya DAIŞ'ê ya bi van herdû bajêran re hatibû qutkirin. Rojnameger Mihemed Bilo ji BasNûçe'yê re ragihand ku hêzên kurd ji derdora Efrînê ber bi Cerbalûsê ve diçin û diyar kir ku hêzên kurd yekîneyên xwe yên li herêma Efrînê ji bo herêmê veguhastine û navçeya Şewerxa kontrolkirine. Bilo got ku tevgera leşkerî li xeta Cerablûs-Ezazê zêde bûye û wiha axivî: "Beriya du rojan êrişek hatkirin. Ji bo ku xwe bigihînin Cerablûsê, divê Ezaz bê kontrolkirin. YPG'ê her tim dianî ziman ku di nava planên wê de kontrolkirina navçeya Şewerxa ya Cerablûsê hebû.

Her wiha Bilo amaje bi wê yekê kir ku dijware ku YPG di ser xeta Girêspî û Kobanê re ber bi Cerablûsê ve biçe û destnîşan kir ku YPG stratejiya kontrolkirina Cerablûsê, li ser Efrînê re pêk tîne. Bilo diyar kir ku hin çavkaniyên YPG'ê ragihandine ku Tirkiye alîkariya leşkerî ji Lîvaya Sûltan Mûrad re şandî ye û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Di navbera Efrîn û Cerablûsê de 90 km hene. Bajarê Ezazê jî di navbera Cerablûs-Kobanê de ye. Têketina ji aliyê Ezazê ve dijwar e ji ber ku Ezaz di destê Opozîsyonê de ye. Çavkaniyên YPG radigihînên ku Tirkiye piştgiriya leşkerî dide Lîwaya Sûltan Mûrad"



Rojava:

# Kurd, wê tevlî civînên Cenevreyê bibin

Ji bo qeyrana siyasî ya Sûriyeyê her çend li gelek paytextên cihanê civînên ji bo çareseriyê hatin lidarxistin jî encamek bidest neket. Di sala 2016'an jî de legerîna çareseriyê berdewam dike. Tê çaverêkirin ku di 25'ê Çileyê de li Cenevreyê dîsa aliyên siyasî li hev bên komkirin. ENKS jî xwe amade dike ku beşdarê civîna Cenevreyê bibe.

Kawîs Botî

Ji bo çareserkirina qeyrana Sûriyê lêgerîna rê û rêbazên siyasî didomin û tê pêşbînî kirin ku 25'ê vê mehê de li bajarê Cenevreyê Swîsre yê hêzên navnetewî cara sêyem kom bibin û aliyên şerê Sûriyê li ser maseyekê kom bikin. Tê gotin ku wê teqez di navbera opozîsyon û rejîma Sûriyê de mûzakere bên kirin. Di konferansa Riyadê de opozîsyona Sûriye û hin komên çekdar ên tûndrew hatibûn vexwandin. Di encama civînê de ku bi mebesta yekdengkirina opzîsyonê pêk hatibû, biryara şandeyeke ku ji 32 kesan pêk tê, derketibû. ENKS jî di bin sîwana Hevpeymana Opozîsyona Suriyê de başdar bûbû, lê ENKS'yê piştî kongreyê, rexne û gazindên xwe anîbû ziman ku di kongreyê de, di derbarê kurdan de tiştek nehatiye gotin û kurd li ber çav nehatine girtin.

Kurd jî xwe amade dikin ku beşdarî civîna Cenevre III'yê bibin. Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS), dest bi berhevkirina îmzeyan kir ku bi awayekî bihêz beşdarî Cenevre III bibin û wan îmzeyan deynin ser maseye ku çareserkirina qeyrana Sûriyê li ser tê axaftin. ENKS wê li Rojavayê Kurdistan û derveyî welat nêrîna gel bistîne û îmzeyan kom bike.

Li ser Cenevre III, komkirina îmzeyan, helwest û rola kurdan û geşedanên dawiyê, BasNûçe'yê, bi rayedarên ENKS û rayedarên Rêveberiya Rojava re axivîn.

**Îbrahîm Biro: ENKS wê beşdarî Cenevre III'yê bibe**

Serokê Encumena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) Îbrahîm Biro ji BasNûçe'yê re nirxandinên girîng kirin û ragihand ku ji bo ku doza gelê kurd li ser maseya Cenevre III cih bigire, ew di nava liv û tevgerê de ne. Biro di derbarê biryara komkirina îmzeyan de, got ku armanca wan ew e ku bi sed hezaran îmzeyan berhev bikin û bizanibin ku çiqas alîgirên vê dozê hene. Biro diyar kir ku tu ji destên wan bê ew ê bikin û pêwîst be ew ê li Cenevreyê û li her derê Ewropayê xwepêşandanan jî lidarbixin doza mafê gelê Kurdistanê raxin ber cavên raya giştî a navdewletî û bala wan bikişînin doza gelê kurd.

**"Hêviya me ji bo çareseriya siyasî heye"**

Her wiha Îbrahîm Biro, balkişand ser Kongreya Riyadê ku di derbarê kurdan de tiştekî berbicav nehatibû gotin û amaje bi wê yekê kir ku di Kongreya Riyadê de xalek jî ji bo kurdan nehatibû veqetandin û ev jî kêmasiyeke mezin bû. Biro axaftina xwe wiha domand: "Em ê xebatên xwe bidomînin. Ji ber ku hêvi û baweriya me ji çareseriya siyasî heye." Biro di dawiya gotinên xwe de got ku hêviya wan ew e ku ev qeyran bi rêbazên siyasî bê çareserkirin û wiha axivî: "Em dixwazin ku mafê hemû pêkhateyên olî û neteweyî yên li Sûriyeyê dijîn bê parastin. Ji bo ku doza gelê kurd di raya giştî ya navdewletî de cih bigire, em ê beşdarî Cenevre III'yê bibin"

**Nûrî Brîmo: Em ê îmzeyan radestî Staffan de Mistura bikin**

Endemê Desteya Rêveber a Partiya Demokrata Kurdistana Sûriyê (PDKS) Nûrî Brîmo ji BasNûçe'yê re axivî û destnîşan kir ku ew ê îmzeyên ku kom kirî radestî hemû aliyên girîng ên di Cenev III'yê de cih digirin, bikin û mebesta wan ew e ku di civîna Cenevre III'yê û di qada navnetewî de dengê kurdan bilind bikin: "Armanca me ew e ku bi sed hezaran îmzeyan kom bikin û radestî Staffan de Mistura, DYA'yê, Rûsya û aliyên din ên girîng bikin. Da ku kurd di Rojeva û di axa Sûriyê de weke netewe mafên xwe yên bidest bixin."

Nûrî Brîmo balkişand ser girîngiya civînê û got ku 'em jî weke kurd, weke netewe xwedî mafên xwe bibin û mafên xwe biparêzin.' Brîmo got, ew hêvî dikin Cenevre III di xizmeta şoreşa Sûriyê û gelê kurd û ên herêmê de: "Em hêvî dikin ku li Cenevreyê, rêz li mafê gelê kurd û pêkhateyên din were girtin. Û hêvî dikin ku ev civîn, nekeve xizmeta rejîma Esad û Îranê." Her wiha Nûrî Brîmo, li ser Kongreya Riyadê jî sekinî û diyar kir ku heke di wê kongreyê de mafên kurdan li ber cavan bihatana girtin, hewcehî bi vê xebatê nedibû. Ev tê wê wateyê ku gelek kêmasî di civînên beriya niha de hatine kirin, hene.

**Şahîn Ehmed: 1 milyon îmze**

Endamê Komîteya Navendî ya PDKS'ê Şahîn Ehmed, ji BasNûçe'yê re nirxandin kirin û amaje bi wê yekê kir ku ev biryara ENKS'ê ye û ew ê îmzeyên ku kom kirin, weke nameyek pêşkêşî Sekreterê Giştî yê Netewên Yekgirtî bikin. Ehmed ragihand ku armanca wan berhevkirina milyonek îmzeyan e. Ehmed wiha axivî: "Em van îmzeyan bi mebesta ku bala raya giştî ya civaka cîhanê bidin meseleya kurdan û mafên gelê kurd li ser maseya Cenevre, di navbera opozîsyon û rejîmê de bibe xaleke taybet. Û em daxwaz dikin ku gelê kurd jî di civînê de tevlî gûftûgo û axaftinên li ser çareserkirina qeyrana Sûriyê bibin.


Îbrahîm Kurdo Îbrahîm Biro Nûrî Brîmo

Şahîn Ehmed da zanîn ku weke PDKS û ENKS,du daxwazên wan ên sereke ji opozîsyona Sûriyê hene û ev herdû daxwaz wiha rave kir: "Yek guhertina rejîma Sûriyê û du jî destûreke nû ku hemû pêkhate di navê de bibin û mafên gelê kurd dibin temînatê de be. Ev her dû daxwazên me ne û teqez divê gelê kurd mafên xwe bidestbixe."

**"Pêşeroja Sûriye û herêmê wê bê ser masê"**

Ehmed anî ziman ku ew her tim çareseriyeke siyasî diparêzin û dixwazin ev arîşe bi riya gûftûgo û diyalogan bê çareserkirin. Ehmed Şahîn balkişand ser girîngiya civînê û ragihand ku di Cenevre III'yan de wê pêşeroja Sûriye û herêmê bê ser maseyê û were axaftin. Ehmed wiha pê de çû: "Em jî hewl didin ku di van civînên girîng de mafê gelê kurd bê parastin. Em bi biryar in. Peymana me heye bi opzîsyonê re û em bi wî awayî derbasî nava opozîsyona Sûriyê bûn."

Li hêla din Şahîn Ehmed civînên Hewlêrê yên ku aliyên kurd hatibûn ba hev jî bibîr xist û diyar kir ku ne yekrêziya kurdan di Kongreye Riyadê û yên din de bû sedem ku kurd li ber çavan neyên girtin. Ehmed wiha got: "Me di civînên Hewlêr I-II'yan de ku bi aliyên kurd ên din re çêbûbû, anî ziman ku ew Sûriyeke federal diparêzên. Em ji vê biryara xwe jî venagerin. Em binpêkirina mafê gelê kurd qebûl nakin." Di berdewamiya axaftina xwe de jî Ehmed li ser civîna Riyadê jî rawestiya û da zanîn ku di wê civînê de aliyên kurd nehatin dîtin û sedema vê yekê jî nebûna yekrêzî û parçebûna kurdan e: "Hem jî hişmendiya opozîsyona Sûriyê ye ku ji ya aqilê rejîmê ne dûr e. Beriya niha ji xeynî ereban, mafên tu pêkhateyên li Sûriyeyê nehatine parastin. Ev hêj di bin bandora wê de ne. Xala herî girîng ew bû ku opozîsyon li hember rejîma Sûriyê bû yekdeng. Nûnerên ENKS'ê jî ya pêwîst anîn ziman."

**Îbrahîm Kurdo: Em beşdarî Cenevre nabin**

Berpirsê Peywendiyên Derve yên Kantona Kobanê Îbrahîm Kurdo jî di derbarê Cenevre de pirsên BasNûçe'yê bersivand û ragihand ku Meclîsa Sûriya Demokratîk (MSD) biryar girtiye ku beşdarî Cenev III'yê nebe û weke sedem jî nêzîkahî û helwesta hêzên navnetî ya li hember Rêveberiya Rojava nîşan da. Kurdo diyar kir ku dewletên ku niha beşdarî Cenevreyê dibin bi awayekî fermî MSD nasnekirine û ji ber wê yekê ew jî beşdarî civînên ku wan nasnakin nabin. Kurdo axaftina xwe wiha domand: "MSD îro gelek pêkhateyên li Rojava û derveyî Rojava di nava xwe de dihewîne. Kurd, ereb, sûryan, tirkmen, ermen, aşûrî û yên din di nava MSD'ê de ne. MSD bi bandora tu dewletan bi temsîlîyetan gelên herêmê hatiye avakirin. Hêzên navnetewî jî naxwazin ku saziyên wiha ku temsîla gelên herêmê dike beşdar bibin. Em nûnertiya vîna gelê Sûriyê dikin. Lê ew jî berjewendiyên xwe li ber çav digirin û bi vî awayî tevdigerîn."

Îbrahîm Kurdo li ser serkeftinên hêzên kurd ên di çeperan da jî sekinî û got ku serkeftina di aliyê leşkerî de bandorê li ser dîplomasiyê jî dike lê hin hêz vîna gelên Sûriyê li ber cav nagirin. Li ser rewşa dawî jî Kurdo ev gotin kirin: "Piştî rizgarkirina Bendava Teşrînê gelek dever û gundên herêmê hatin rizgarkirin û gelê herêmê jî biryar dan ku tevlî HSD'ê bibin. Wê heta Cerablûs, Ezaz û paytexta DAIŞ'ê Reqqayê biçin û bên rizgarkirin. Dema ku her gavek di aliyê leşkerî de serbikeve wê bandora vê li ser dîplomasiyê jî hebe. Pêşeroja HSD'ê jî vekiriye û gelê Sûriyê roj bi roj tevlî vê hêzê dibin ev jî tiştekî berbiçav e."



Dr. Asso Hasanzadeh:

# Hemû hêmanên dewletbûna RHK'ê hene

Siwar Bedirxan

RHK di sedsaliya peymana Sykes - Picotê de ber bi serbixwebûnê ve diçe. Amadekariyên rapirsiya serxwebûnê ku di havîna sala 2014'an hatibû destpêkirin ji ber êrîşên DAIŞ'ê hatibûn taloqkirin. Bi derxistina DAIŞ'ê ya ji Kurdistanê rapirsî dîsa hat rojevê. Pisporên bale dikşînin ser rewşa Kurdistanê didin zanîn ku şerê bi DAIŞ'ê re û dîplomasiya serkeftî ya rayedarên RHK'ê statûyeke cuda ji Kurdistanê re peyda kiriye û ji bo dewletbûnê jî hemû hêman palpiştiyê didin proseya serbixwebûnê.

Peymana Sykes - Picot a di 16'ê Çileya 1916'an di navbera dîplomatên Brîtanya û Fransayê de hat îmzekirin çarenûsa Rojhilata Navîn guherand. Bi wê peymanê gelek welat û herêm di navbera herdû welatan li hev hatin parvekirin. Her çend bi Şoreşa Bolşevîkan Wladimir Lenin ew peyman ji raya giştî ya cihanê re eşkere kiribe jî xalên parvekirina bi ser gelek herêman de hat. Yek ji wan welatan jî Kurdistan bû. Ji bilî sînorê Rojhilatê Kurdistanê, parçeyên din ê Kurdistanê di navbera Fransa û Brîtanyayê de li hev hatin parvekirin. Ev herêmên Kurdistanê heta demeke dirêj di bin kontrola van welatan de man. Piştî ku ew ji herêmê vekişiyan jî Kurdistan ji aliyê serbazên ereb ê ji aliyê wan ve dihat tayînkirin hat birêvebirin.

Niha ew peyman dîsa di rojevê de ye û aloziya Rojhilata Navîn destnîşanî bi wê peymanê dike. Li hêla din, Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) din di nava wê aloziyê de, di sedsaliya wê peymanê de ber bi diyarkirina çarenûsa xwe ve diçe. Amadekariyên rapirsînê yên bi êrîşên DAIŞ'ê hatibûn betalkirin dîsa destpêkirine û kurd di her pêngavê de li ser serbixwebûnê bi israr in. Dr. Asso Hasanzadeh proseya rapirsiya serbixwebûna Kurdistanê, nêzîkahiya welatan, helwesta Netewên Yekgirtî (NY) ji, siberoja rewşa giştî parçeyên Kurdistanê ji BasNûçe'yê re eşkere kir.

**RHK ber bi serbixwebûnê ve diçe. Her wiha niha amadekariyên serbixwebûnê birêve diçin. Di warê hiqûqa navdewletî divê çi bê kirin? Ev prose di warê navdewletî de çawa birêve diçe?**

Di hiqûqa navdewletî de çi ji me re pêwîst e? Ji bo dewletbûyînê pêdawîsti bi sê hêman yan jî elementan heye. Di hiqûqa navdewletî jî de destnîşaniya vê yekê hatiye kirin. Divê her sê element li hev kom bibin. Yek xak e, yek xelk e,ya din jî hikûmet e. Kombûna van her sê elementan dikarin rêgeha dewletbûnê vekin. Niha rapirsiya serbixwebûnê di rojeva RHK'ê de ye. Di nava çend salên dawîn de ev mijara RHK'ê ye. Serkirdeyên siyasî yên Başûr ev retorik anîne rojeva welat. Ev mesele zêdetir ji 10 sal in di li parçeyên din ê Kurdistanê jî tê axaftin, lê belê mafê diyarkirina çarenûsa xwe li RHK'ê bêhtir tê qisekirin û weke diyardeke sereke ye.

Ew her sê elementên di destpêkê de min amaje bi wan kir li nav me hene. Xaka me, heye. Rêveberiya wê di destê kurdan de heye. Gelheyeke zêde ya kurdnişîn heye. Piştî êrîşên DAIŞ'ê yê 2014'an Artêşa Iraqê ji Mûsilê derçû û ew herêmên ku berê niqaş li ser wan hebû dîsa ket bin kontrola kurdan. Hikûmeteke me heye, kêşa û arîşeyên wê hebin jî, hikûmeteke me li ser xaka me heye. Elementeke dîtir ku gelekî giring û beriya hikûmet û xelkê tê xaka me ye. Di rewşeke wisa de, qonaxa diyarkirina çarenûsa xwe de rojeva kurdan de cih girt. Li hêla din di warê navdewletî jî de ew hat rojevê. Şêrê Kurdistana bê nexşe bala cihanê kişand ser xwe. Piştevaniyeke navdewletî bi xwe ji bo Kurdistanê peyda bû. Statûyeke cuda peyda bû. Di nav federasyonên cihan de statuya herî ciyawaz a li cihan a Herêma Kurdistanê ye. Herêmeke wisa balkêş û bihêz li cihanê nîne. Beriya hatina DAIŞ'ê jî rewşeke cuda hebû. Lê belê piştî DAIŞ'ê jî rewşeke din rûda. Piştevaniya gelek serokkomar û serokkwezîran niha ji bo Kurdistanê yekser heye.

Di qonaxeke wisa de, hebûna DAIŞ'ê gelek girift û arîşeyên din pêk anîn. Çûna ber bi wê xewna mezin berê jî parçebûn anî bû ser kurdan. Wisa dibinim ku yeksazaniyeke siyasî rû dide. Divê prose û bernameyeke niştimanî bê sazkirin. Xelk xwe beşdarî wê proseyê bibe. Xelk xwe di wê proseyê de bibine. Ji bo xizmetguzariyê bernameyên me yên taybetî hebin.

**Proseya asta navdewletî çi ye?**

Di sedsala 19'an de pirensîba mafê diyarkirina çarenûsa gelan ji bo gelan bû derfetek ku çarenûsa xwe diyar bikin. Bi taybet jî li Ewropa. Bi têkçûna împaratoriyan vê yekê rûda. Weke belavbûna împaratoriya Otrîş û Macaristanê, Şoreşa 1848'an li Ewropayê gorankarî pêk anî. Di sedsala 20'an de mafe diyarkirina çarenûsa gelan di 14 xalên serokê Amerîkayê de hatibû behskirin. Piştî Şerê Yekem ê Cihanê û Şerê Duyem ê Cihanê naverokeke qanûnî wergirt. Di gelek konferansên navdewletî de bahs li ser hatkirin. Eger em behsa rewşa niha bikin ew yek jî serdema Netewên Yekgirtî (NY) ye. NY xala mafê diyarkirina çarenûsa gelan weke xala serekî pesend kiriye. Biryarnameyên nasraw hene li ser vê rewşê. Weke biryara 1513, biryarnameya 1541, weke din jî biryarnameya 25-26 jî di navbera salên 1960-1970'ê de behsa çarenûsa mafê diyarkirina çarenûsa gelan dikin.

Du peymannameyên gewrê yê mafê mirovan jî di maddeyên yekem ê hevbeş de behsa mafê diyarkirina çarenûsa gelan dikin. Ew di warê qanûnî deye. Di warê pêkanîna mafê diyarkirina çarenûsa gelan de guherîn hebûn. Heta Şerê Sar bo gelên bindest bi cih nedibû. Piştî belavbûna Sovyetê û hin rûdanên din salên 2 hezeran jî eşkere kirin ku dikarin hin tiştên nû pêk bînin. Yanî derket holê ku mafê serbixwebûn bi tenê ne mafê wan gelên belavbûna welatekî konfederasyon in. Hin teoriyên nû peyda bûn. Heqê wî gelê heye ku li hember serkutî û binpêkirina mafê xwe derkeve. Gelê kurd di dirêjahiya dirokê de rastî binpêkirin û serkutiyan bûye. Iraq jî, ji destpêka xwe ve mafê kurdan ê rewa binpê kiriye. Ew yek jî meşrûiyetê çêdike ji kurdan re ku ji Iraqê veqetin.

Qanûnên navdewletî gelekî balê dikşînin ser yekgirtina xaka welatan û serweriya welatan. Lê belê eger gelek bikaribe bi awayekî defakto ji dewletekê cuda bibe û xwe birêve bibe û ji aliyê dewletan ve bê nasîn wê demê dikare bibe endamê NY û dibe welatekî serbixwe.

**Niha di warê nûnertiya kurdan a di asta navdewletî de çi kêşe hene? Li herêm û welatên din ê weke Kurdistanê ew qonax çawa bi rêve diçe?**

Nûnertiya kurdan jî di vê meseleyê de giring e. Ew welatên heyî nûnertiya kurdan nakin. Hikûmeta Bexda û Iraq heta niha nûnertiya kurdan nekirine. Her çend Bexda li gor qanûnên fedarasyonê pesend kiri be jî nûnertiya kurdan nekiriye. Mînaka Kosovayê heye. Li ser serbixwebûna Kosovayê gelek arîşe hebûn. Wan li ser serbixwebûna xwe biryar da. Welatên cihanê qonax bi qonax, ew biryara wan pesend kir. Li başûrê Sûdanê jî ew qonax bi heman şêweyê birêveçû. Gelê Îskoçya beriya bi du salan rapirsî kir, wan biryara serbixwebûnê neda. Bi ser Brîtanyayê ve man. Li Îspanyayê Herêma Katalonya heye ew jî niha ber bi guherînê ve diherin. Vê yekê tesîr li ser rewşa Kurdistanê jî kiriye. Ev yek meşrûiyetê dide rewşa kurda jî. Ji bilî rewşa siyasî û qanûnî ku me amaje pê kir geşedanên li herêmê jî gorankariyek aniye ser nexşa herêmê. Weke dabeşbûna nexşeya Sykes - Picot.

**Em bên ser behsa Sykes - Picot û dabeşbûna Kurdistanê. Di sedsaliya xwe de ew peyman dîsa di rojevê de ye û Kurdistan di wê peymanê de hatibû dabeşkirin. Îro li Kurdistanê weke defakto du rêveberiyên kurdan hene. Gelo Sykes - Picot ji bo kurdan bi dawî bû, yan**





**jî guherînên nû ew ê Sykes –Picot'eke nû li ser kurdan ferz bike?**

Sykes - Picot bi zirara gelek neteweyan bi dawî bû. Kurd jî yek ji wan gelan bû. Îro gelek dewlet xewna ji nav birina Sykes - Picot dibînin. Kurd amaje pê dikin ku ew peyman bi dawî bûye. Hinek welatên din her wiha. DAIŞ jî eşkere dike ku sînorên Sykes - Picot bi dawî bûne. Di 16'ê vê mehê de sed sal di ser Sykes Picotê re derbas dibin. Lê belê ez dixwazim amaje li ser tiştekî din bikim. Beriya niha bi du salan jî 500 saliya dabeşbûna Kurdistanê bû. Di Peymana Çaldiranê jî de Kurdistan hat dabeşkirin. Piştî şerê Çaldiranê sînora hatin danîn. Kurdistan di navbera du hezên de hat dabeşkirin û Peymana Sykes - Picot jî bû hokara wê yekê ku Kurdistan bibe 4 parçe. Ji ber ku Îran nebû parçeyekî şerê cihanî ew sînor, her weke xwe man.

Agahiya rûsan û îtaliyan jî ji wê Peymana Sykes - Picot a dîplomatê frensî û brîtanî hebû û wan jî qebûl kiribûn. Navçeyên osmanî kiribûn 5 herêm. Dû ji vana yê Brîtanya bûn. Ûrdûn, Kuweyt, Mezopotamya, beşê din para Fransayê bûn. Lûbnan, bajarê Edene yê niha bi ser Tirkiyê ve ye û bakûrê Sûriyê jî pişka Fransayê bû. Mûsil jî pişka Fransayê bû. Lê belê em dizanin ku piştre ji bo nefta Mûsilê ket destê Brîtanya. Fransa jî li Kerkûkê peşka neftê peyda kir. Di sala 1920'an de bi kombûna Netewên Yekgirtî de ew xalên peymana nepenî hatin pesendkirin û ew sînor hatin dagirkirin. Li nav sînorên Dewleta Osmanî ya hilweşiya de Lûbnan û Sûriye pişka Fransayê ketin. Mûsil jî para Îngîlîstanê ket. Herêma Edenê ji bi şoreşa Atatürk ji destê Fransayê hat derxistin. Kurd jî di wê qonaxê de bûn û di Peymana Sevrê de gelek soz ji bo kurdan hatin dayîn. Ew sozên Peymana Sevrê di Peymana Lozanê de nehatin bicihanîn.

**Behsa gelek nexşeyan û dîzyankirina Rojhilata Navîn tê kirin, gelo di kurtedemekê de mimkun e tiştekî wisa pêk were?**

Kurd jî di nav de tu welatên herêmê nikarin gorankariyeke mezin li herêmê bikin û berjewendiyên xwe li ser herêmê ferz bikin. Baweriya min bi wê yekê nîne ku karibin tiştekî wisa bikin. Kurd eşkere dikin ku Iraq weke xwe namîne. Tirkiyeya niha, yanî Tirkiyeya AKP'ê û Erdoğan, beriya DAIŞ were dixwest Dewleta Osmanî dîsa li herêmê ava bike. Niha DAIŞ heye. Sunneyên Iraqê jî tev digerin da ku dewleteke wan hebe. DAIŞ'ê sînor ji nûhve dîzayn kir. Erdnîgariyeke Iraq û Sûriyê DAIŞ'ê dîzyan kiriye. Gelek nexşeyan belav dikin û armanca xwe weke belavkirina îdeolojiya xîlafeta îslamî didin zanîn.

Li ser nexşeyan gelek amaje hene. Ez bawer nakim ku nexşeyeke nepenî yan jî hemaheng di navbera welatên gewre de li ser herêmê hatibe plankirin. Mimkûn e nexşeyeke nû bi kêrî wan were û di berjewendiya wan debe. Kurd jî gelekî baş dikarin ji bo berjewendiyên welatên rojava bibin hevpeyman. Îran û Tirkiye jî dizanin ku karê guherîna herêmê dijwar e. Rûsya û DYA'yê jî li ser vê yekê di heman fikre dene. Parastina statûkoyê her tim tê parastin. Di peywendiyên bi kurdan re ji kurdan re tê piştevaniyeke mezin heye, lê belê di gotara fermî jî de eşkere dikin ku ew razî nînin ku staûkoya heyî têk biçe.

**Li ser vê babetê ez dixwazim bêm ser sînorên navxweyî û nêzîkbûna kurdan. Kurdên xwedî statû çawa nêzîkî hevdû dibin û ev yek tesîreke çawa li ser siyaseta navdewletî dike?**

Ew hêzên mezin ê li Rojhilata Navîn arîşeya wan bi hev re heye, li ser piştevaniya kurdan yekdeng in. Di warê alîkariya kurdên Rojava hemaheng in. Başûr jî dikare balê bikşîne ser rewşa Rojavayê Kurdistanê di asta navdewletî de. DYA'yê, Fransa, Brîtanya di warê siyasî û serbazî de hem piştevaniya RHK'ê dikin hem jî piştevaniya kantonên Rojavayê Kurdistanê dikin. Berxwedana ciwanên kurd ê Rojava sempatiyeke mezin peyda kir ji bo kurdan. Bi taybetî di şerê Kobanê de. RHK'ê jî di vî warî de piştevaniyeke giring da wan. Agahiya min baş jê heye ku kar li ser wê yekê hat kirin ku François Hollande pêşwaziya wan bike. DYA'yê wan qebûl bike.

Serdema Sykes - Picot serdema Brîtanya û Fransayê bûn. Niha serdema Rûsya û DYA'yê ye. Herdû welat jî gelekî mezin in. Sînorên wan fireh in. Herdû welat jî endamê daîmî yê encûmana asayîşe ne. Niha milmilaneyên herêmê, kêşeyên herêmê dibin diyalogên herdû welatan. Welatên Kendavê jî niha bi çavekî xirab li kurdan nanerin. Her çend siyaseta ereban di eslê xwe de li dijî xewna mezin a kurdan jî be ew niha bi çavekî xirab li kurdan nanerin. Ev rewşa heyî û Sykes - Picot her çend neguherîbe jî, ji bo kurdan, tûşî hin muşkileyan bû. Pêdiviya kurdan bi yekdengiya û yeksazaniyê heye. Belkî di wê çarçoveyê de em Kongreye Netewî pêk bînin û arişeyên navxweyî jî çareser bikin. Niha ew retorîka serbixwebûnê hewayeke din a siyasî peyda kir li herêmê.

**Di nava vê aloziya mezhebî û rikberiya DYA'yê û Rûsyayê de ew ê çi guherin li Bakur û Rojhilatê Kurdistanê pêk werin?**

Em weke gelê kurd dizanin ku welatê me bi ser çar parçeyan dabeş bûye. Niha du parçeyên Kurdistanê xwedî statû ne. Siberojê belkî parçeyên din ê Kurdistanê jî doza serbixwebûnê bikin û belkî Kurdistaneke yekgirtî saz bibe. Rast e meseleya kurdan yek mesele ye. Li her parçeyekî Kurdistanê taybetmendiyên xas yê wê arîşeyê hene. Li her parçeyê Kurdistanê mesleya kurdan pêkve dernakeve pêş. Hin caran parçeyekî Kurdistanê nayê rojevê jî.

Weke Rojhilatê Kurdistanê. Ew nayê nav panaromaya Kurdistanê. Weke salên berê nîne. Salên berê gelekî bi hêz bûn û di rojevê de bûn. Niha çalakvanên siyasî û mafê mirovan tên serkutkitin. Hizbên siyasî hene bi hêz in. Lê belê ji ber konjonktura navçeyê jî di rojevê de nîn in. Îran li herêmê bihêz e. Di meseleya Filîstîn û Îsraîlê de. Di meseleya Hizbûllahê jî de bi karîger e. Welatên cihanê ji peywendî durist nekirin bi kurdan re. Cudahiyeke mezin a Rojhilatê Kurdistanê bi parçeyên din re heye. Rast e. Rojhilat di warê gelheyê de parçeyê duyem e. Lê belê Îran weke împaratoriyeke firernetew e. Gelek netewe li Îranê hene. Îran ne weke, Tirkiye, Iraq, Sûriye sade ye.

**Bo Bakur ew ê rewş çi be?**

Ez gelekî kêfxweş im ku niha doza xwerêveberiya xwe dikin û rewşeke wisa derket holê. Tiştekî wisa jî heye ku gelê kurd hemû peywendiyê bi nûnerên kurd nakin. Dengên xwe nadin nûnerên kurdan. Em wê yekê di hilbijartinan de dibînin. Eger piştevaniya wan ji bo nûnerên kurdan hebûya divê hejmara nûnerên wan du caran li yê niha bûya. Min gelekî hêvî dikir ku hem di beşdarî parlementoyê bibin û ji bo siberojê kar bikin. Belê rast e. Xewnên xirab ê Erdoğan ji bo rêveberiya Tirkiyê hene. Bi taktîk tevdigere. Di serdema wî de gelek gorankariyên mezin rûdan ku bi taktik be yan jî ne taktik be. Rast e, mafê xwebirêvebirinê yê li Başûr yê heyî li Bakur tuneye. Lê belê kurdên Bakur dikarin di warê medenî û siyasî de gelek kar bikin. Li Mahabadê kes nikare derkeve kolanan û çalakiyeke medenî birêve bibe.

### Wargeha jiyana 10 hezar salî

# AMED DİYARBEKİR



Dîrok, yekem car navê peytexta kurdan, wek 'Amed' an jî 'Amîd' qeyd dike. Ev nav bi awayekî nivîskî yekem car li ser doxa şûrê Mîrê Asûrî Adad Nîrarî hatiye neqşandin. Ev şûr, b.z ji sala 1300'î maye. Navê bajêr di berhemên kevn ê romayiyan de jî, wek 'Amîdo' an ji 'Amîda' derbas dibe. Dîsa ev nav di çavkaniyên tirkan de 'Kara Amîd/Ameda Reş' e.

Welat Baz

Dîroka nivîskî, bajarê Amedê, bi derketina însan a ser dika jiyana civakî ve derbasî qeydan dike. Li gor lêkolîn û berhemên antîk ku hatine tesbîtkirin, li herema Amedê berî zayîna Îsa di sala 7250'an de jiyana civakî destpêkiriye. Rêçên vê dema neolîtîk, 50 km dûrî Amedê, li nêzî gundê Hîlarê, li taxa Berçem hatiye dîtin. Li Farqînê li şikeftên Hasûnê û li navçe ya Egilê jî rêça jiyana kevn hatiye tespîtkirin. Dîrok, yekem car navê peytexta kurda, wek 'Amed' an jî 'Amîd' qeyd dike. Ev nav bi awayekî nivîskî yekem car li ser doxa şûrê Mîrê Asûrî Adad Nîrarî hatiye neqşandin. Ev şûr, b.z ji sala 1300'î maye.

Navê bajêr di berhemên kevn ê romayiyan de jî, wek 'Amîdo' an ji 'Amîda' derbas dibe. Dîsa ev nav di çavkaniyên tirkan de 'Kara Amîd/Ameda Reş' e. Reşbûna Amedê ji kevirên bazalt ê derûdora bajêr tê. Ev kevir di mîmariya bajêr de hatiye bikaranîn.

Di dema Xelîfe Omer, Artêşa Ereb berê xwe dide Kurdistanê. Amed ji alî leşkerên Xalid bîn Welîd ve tê zeftkirin. Heta wê demê li Amedê baweriyên di nav gel de, bahdînî (zerdeştî), îsewîtî û cihûtî ye. Piştî serdestiya ereban, hin eşîrên ereb jî hatin derûdora Amedê. Yek ji van eşîran bi navê 'Bekr' dihat naskirin. Cîhê ku eşîra Bekr lê konên xwe daniye di nav alema ereb de wek, 'Diyarê Bekr' hatiye binavkirin û di pêvajoya dawîn de ev nav ketiye dêlva navê Amedê. Piştî sedsala 8'an êdî bi gelemperî navê nûh hatiye bikaranîn.

Di dema osmaniyan de jî navê ku ereban li bajêr kiriye hat pejirandin û Amed wek 'Diyarbekir' hat naskirin. Piştî Komara Tirk hat damezirandin, li Kurdistanê navên deveran hatin guhertin. Û peyva Diyarbekir jî, bi emrê Mustafa Kemal wek 'Diyarbakır' hat gewirandin.

### Kela Amedê

Kela Amedê newazeyeke dîroka mirovahiyê ye. Nivîskar Gabrîel dibêje, 'Kela Amedê bi serê xwe muzeyeke nivîsara ye'. Asasê kelê di dema hûrrîyan de hatiye danîn. Kele wê demê biçûk bûye û hêdî hêdî xerabûye. P.z di sala 349'an de ji alî Împaratorê Romayê Konstantîn ve carekî din hatiye tamîrkirin û firehkirin. Li ser dîwarên kelê rêç û berhemên 12 dewlet û şaristaniyan hene.

Kele ji dû beşan pêk tê. Dîwarê kela mezin 5 km dirêj û 12 metre bilindin. Firehiya wan 3 an jî 5 metre ye. Gerok Nasir Xusrew, ku di sedsala 11an de Amedê ziyaret kiribû dibêje, wê demê dîwarên surê 15 an jî 21 metre bilind bûne. Beşa dûyem kela navîn e. Halêhazir dîwarê kelê bi piranî di bin axê de mane û ji jor ve jî qismen xerabûne. Sûr ji jorê ve wek masîmertalekî tê xuyan. Bi navê Deriyê Çiyê, Deriyê Mêrdînê, Deriyê Ruhayê û Deriyê Dîjlê çar deriyê esasî û çend deriyên ku paşê hatine çêkirin jî hene. Hijmara bircên derûdora kelê 82 ne. Ev birc di demên kevn de dû qat bûne. Qatên jêrîn wek cepilxane û lewazimxane, yên jorê jî, ji bo razan û sekna leşkeran hatiye bikaranîn.

### Birca Heftbirayan

Birca Heftbirayan di nav bircên kelê de ya herî mezin e. Efsana ku li ser vê bircê hîn jî tê gotin, hem perçeyeke dîroka bajêr a bi xwîn û hem jî qehremaniya parastvanên Amedê ye. Li gor efsanê di demên kevn de dora Amedê ji alî dijmin ve hatiye pêçan. Dorpêçan bi mehan domkiriye. Gelek pevçûnên xedar çêbûne. Lê bajêr teslîm nebûye. Di dawiyê de ji ber birçîbûn û xelasbûna cepilxanê, bajêr dikeve û artêşa dagirker dikeve nav Amedê. Lê bircekî ku ji alî heft birayan ve tê parastin, teslîm nabe. Dijmin herçiqas êrişê bircê dike jî nikarê wê bistîne. Di vê navberê de ji heft birayan re banga teslîmiyetê dikin. Heft bira bi şertekî teslîmiyetê qebûl dikin. Dibêjin, 'divê hûn canê me bibexşînin û divê qral û fermandarên artêşa we derkevin bircê. Em ancax teslîmê wan dibin. Ev şert neyên bicîhanîn, em teslîm nabin.' Dijmin qebûl dike. Dema qral û fermandarên dagirkeran dertên bircê, heft bira cepilxana bircê diteqînin û birc serûbin dibe. Wan, tevî xwe, qral û fermandarê dijmin jî kuştine.

Piştî vê bûyerê, ji bo bîranîna heft birayan, Amediyan navê wan li vê bircê kirine û bi vî awayî wan bibîrtînin. Kela Amedê terkê qedera xwe ye. Hin rêvebirên dewletê ji bo xerakirina vê berhema dîrokî hin xiretan jî kiriye. Di sala 1930'an de bi fermana waliyê Amedê dîwarên sûrê bi dînamîtê hatin xerakirin. Walî ji gel re bang kiriye ku ew ji bo avakirina xaniyan kevirên sûrê bikar bînin. Arkeologê Amerîkî Prof. A. Gabriel wê demê li bajêr bûye. Ew ji Mustafa Kemal re raporekî dinivisîne û gelê Amedê jî, ji hukûmetê re daxwaznameyên parastina kelê dişînin û bi vî awayî, îmhakirina sûra bajêr tê sekinandin.

### Pira Dîjlê (Pira Dehderî)

Ji ber çem û avên Kurdistanê, li gelek deverên vî welatî pirên giranbiha hatine avakirin. Yek ji çemên ku li ser gelek pir hatine avakirin Dîjle ye. Pira Dîjle dû km dûrî rojhilatê Kela Amedê li ser Çemê Dîjle hatiye avakirin. Pir di nav gel de bi navê 'Pira Dehderî' tê naskirin.

Di demên kevn de rêya Farqînê ji ser pirê derbas dibû. U vê pirê di seyrûsefera heremê de rolekî girîng dileyîst. Li kêleka pirê baxçê Evsel li hember pirê jî girê Qirkler cîh digre. Li gor kîtabe ya ser pirê di sala 1605'an de di deman merwaniyan de ji alî hukumdarê Kurd, Nizamudewle Nasir ve hatiye çêkirin. Mîmarê pirê Ubeyd Kurê Yusîf e. Her wiha tê texmînkirin ku halê orjinal ê pirê hîn jî kevintir e.

Deverên xesardîtî yê pirê di dema Xelîfe Hîşamê emewî de hatine nûh kirin. Ji kevirê reş, li ser kemberên tûj hatiye avakirin. Deh çaviyên pirê hene. Pir nêzî 200 metre dirêj e. Ji avê 10 metre bilind e. Ji ber ku di demên cûrbecûr de hatiye tamîrkirin, mîmariya xwe ya yekpare wendakiriye. Li ser diwarên pirê gelek neqşên nebatan, kifî û motîvên şêran cîh digre.

### Pira Hêştiran

Pirekî din ku li ser çemên Amedê hatiye avakirin Pira Hêştiran e. Pir ji Amedê 20 kilometre dûr li ser Ava Heştiran, ango Devegêçidi Suyu hatiye danîn. Pira Hêştiran di sala 1284'an de ji alî Siltanê Eyûbî Mahmûdê kurê Mihemed ve hatiye avakirin. Mîmarê pirê Caferê Kurê Mehmûd e. Heft çaviyên pirê hene. Avahiya pirê ji kevirên reş hatiye avakirin û li ser kemberên tûj hatiye lêkirin. Ji ber ku êdî ne pêwîste îro ev pir nayê bikaranîn.

### Xaniyên Amedê

Bajarê Amedê ku bi sedan sal ji gelek şaristaniyan re peytextî kiriye, hûnandina xwe ya dîrokî hîn jî parastiye. Mîmarî û rêçên kevn Amedê ji bajar û deverên din cuda dike. Di taxên nav kelê de hîn jî rêça mîmariya kevnare tê dîtin. Ev taybetî di xaniyên bajêr de xwe nîşan dide. Her xaniyekî wek bermayiyekî dîrokî ye.

Taybetiya mîmariya xaniyên Amedê hevşên fireh, ê bi hewiz û odeyên fireh ê bi paceyên





Li gor belgeyên dîrokî xwediyên Amedê ê yekem, hûrrî-mîttanî ne. Ev şaristaniya ku b.z di salên 3 hezaran de derketiye ser dikê, piştî sedan sal, wek dû dewlet perçebûne û paşê jî di sedsala 14'an de ji alî asûriyan ve hatine têkbirin. Îro jî li ser hin zinnarên nêzî navçeyên Licê û Egilê taswîrên hukumdarên asûriyan ku Dewleta Hûrrî-Mîttanî xerakiribûn hene.

mezin e. Banî bi pirranî bi xweliyê hatine girtin. Ev banî havînan bi textên razanê tên xemilandin. Xanîyên Amedê ku ji kevirên reş û birrandî hatine çêkirin, yek ji dewlemendî ya bajêrin. Di taxên nav kelê de hîn jî bi sedan xaniyên kevn hene.Mîmarên van xanî û qesrên dîrokî, hem zivistanan û hem jî havînan hesibandine û berhemên xwe wiha çêkirine. Ji ber vê yekê xanî û qesrên Amedê havînan hênik, zivistanan germin. Di avakirina xaniyan de kevirên reş ê bazalt tê bikaranîn. Du cûrên vî kevirî hene. E sivik û qûlqulî wek kevirê mê, ê giran jî wek kevirê nêr tê binav kirin. Dî dîwar û bingehan de kevirê mê, di sitûn û hewizan de jî kevirê nêr tên bikaranîn. Kevirên reş ê bazalt ji dema teqîna wolqana Çiyayê Qerec pejiqîne. Ev çiya 20 km dûrî bajêre. Di xaniyên Amedê ê kevnare de hîn jî di hewşên gelek xanîyan de dengê şahîyan û civatan tê. Hin xaniyên Amedê hatine parastin û wek muzexane tên organîze kirin.

**Mizgefta Mezin**

Mizgefta Mezin ku bi navê 'Ulu Cami' Ulu Cami jî tê zanîn, di demên kevn de dêr bûye. Mizgeft di nav dîwarên sûrê de, li nav bajêr e.

Di sala 639an de ku artêşa erebên misluman Amedê dagir kirin, ev dêra ku bi navê Mar Toma dihat zanîn, hat restorekirin û wek mizgeftekî hat bikaranîn. Li Kurdistanê mizgefta herî kevn e.

Mîmarîya vê berhemê wek newazeyeke. Bi kevirên reş ê Çiyayê Qerej hatiye lêkirin. Bingeha avahiyê li ser sed kemerî hatîye danîn. Sitûnên mizgeftê bi kemberên tûj ve hatine girêdan. Hemû banîyên mizgeftê bi qûbeyan hatîne girtin û kevirên dîwarên wê hatine neqişandin. Mîhrab û mînbera mizgeftê berhemên dema kevn e. Di mizgeftê de dû cîhên îbadetê hene. Bingeha minarê çargoşe, bejna wê jî gilover e.

Li ser dîwarên mizgeftê ji demên cûrbecûr gelek nivîsarên hukumdarên Amedê mene. Yek ji wan kîtabeyan a hukumdarê Şelçuqî Melîkşah e. Di hevşa mizgeftê de şadirwan, hewiz û katjimerekî rojê hene. Li dora mizgeftê jî dû medrese cîh digrin. Sê deriyên mezin ê mizgeftê hene. Mizgefta Mezin di demên kevn de çend cara hatiye tamîrkirin. Di sedsala 11'an de di dema Selçûkiyan de, di sedsala 15an de di dema Aqqoyiniyan de, di sedsala 18'an de di dema osmaniyan de hatiye tamirkirin an jî hin beş li mizgeftê hatine zêdekirin. Di sala 1115'an de li Amedê erdhejeke mezin çêbû û li bajêr şewat derket. Di encama erdhej û şewatê de ev mizgeft jî xerabû. Xesara mizgeftê di sala 1240'an de cardin hat tamîrkirin. Li kêleka mizgeftê gelek avahiyên din jî hene. Yek ji wan Medresa Zincîriye ye. Ev medrese di sala 1198'an de ji alî Mîmar Îsa Ebû Dîrhem ve hatiye çêkirin.

**Mizgeftên Amêde**

Mizgefta Fatih Paşa li taxa Xançepekê li nêzî Kela Navîn ne. Mizgeft di sala 1516an de ji alî Mihemed Paşa ve hatiye avakirin. Li Amedê mînaka mîmariya osmaniyan a yekem e. Cîhê cimeetê ji alî 7 qûbêyên ku li ser 8 sitûnan hatiyê sergirtin pêk tê. Ser mekana mezin ji alî qûbeyekî navendî ku li ser çar sitûnaye, hatiye girtin. Li kêleka vê qûbê jî çar nîv qûbeyên din hene. Li kêlaka mekana navîn jî çend ode hene. Avahî ji kevirên reş û spî hatiye lêkirin. Heta vê mînakê, pîlana mîmariya mizgeftên osmaniyan di şeklê tipa T de bû. Li kêleka mizgeftê Tirba Osman Paşa û çend avahiyên din jî cîh digrin. Li Amedê mizgeftek din a dirokî Mizgefta Şêx Metar e. Di nivîsara mizgefte de tê gotin ku di dema hukumdarê Aqqoyinî Qasim de di sala 1500'an de hatiye çêkirin. Avahî ji kevirên reş û spi hatiye lêkirin. Ser mekana mezin ku wek qarekiye bi kûbeyekî hatiye girtin. Ev qûbe li ser çar sitûna ye. Deriyê taç bi dû nîşan ve hatiye zexmkirin. Minara mizgeftê neqişkiriye.

Mizgef û dêrên bajêr ê mezin jî evin: Mizgefta Hezretî Silêman, Mizgefta Behram Paşa, Mizgefta Melek Ahmet Paşa, Mizgefta Şêx Matar, Mizgefta Lale Beg, Mizgefta Fatih Paşa, Mizgefta Xusrew Paşa, Mizgefta Nebî, Dêra Dayika Meryem û Dêra Nasturiyan.Amed ji alî berhemên dîrokî yê din ve jî dewlemend e. Yek ji van berheman medreseyên bajêrin. Medresa Zincîriye, Elî Paşa, Mesûdiye, Musluhiddîn, Seyfûddîn û Raxibiye yên mezintirin. Dîsa li bajêr de bi dehan tirbe, kerwansaray, hemam, xan û muzexane jî hene.

**Xanên Amedê**

Bajarê Amedê ji ber ku di demên kevn de navendeke bazirganî, zanistî û rêvebiriyê bûye gelek mêvanên bajêr hebûne. Ji bo hewandina mêvanan li bajêr gelek xan hatine çêkirin. Xana Xusrew Paşa li kêleka Deriyê Mêrdînê, di bin siya Kela Amedê de hatiye avakirin. Xan di sala 1527'an de ji alî Xusrew Paşa ve hatiye çêkirin. Di hewşa fireh a xanê de şadirwaneke mezin û li dorê jî avahiya dû qat a bi şaneşîn cîh digre. Odeyên razanê li pişt rewaxa ye. Axurên ji bo heywanan jî li hewşê ye. Deriyê taç bi neqşan hatiye xemilandin. Xana Xusrew Paşa ku îro bi navê Kerwansaray tê naskirin û hîn jî wek otêl tê bikaranîn. Wek demên berê îro jî mêvanên Amedê di nav vê avahiya kevnare de dikevin xewnên kûr.Xaneke din ku li Amedê mêvanan bêhijmar hewandiye Xana Hesen Paşa ye. Di nav gel de ji vê xanê re Xana Almastan jî tê gotin. Di demên kevn de di vê xanê de madenên giranbiha ê wek elmas û yakûd hatine çêkirin. Ev xan li kêleka Mizgefta Mezin cîh digre. Kîtabeya xanê nîşandide ku di sala 1574'an de hatiye avakirin. Mîmariya vê avahiyê mînakeke balkêş e. Di nav hevşê de şadirwaneke li ser şeş sitûna heye. Dîwarên hindir ji dû kevirên rengîn hatine lêkirin. Odeyên razanê li pişt şaneşîneke dû qatin. Ji bilî van xanan li Amedê çend xanên din ê dîrokî yên din jî hene.











**Malmisanij:**

# Kurmanckî û kirmanckî yewbînî ra nêzdî yê




**Nadire Güntaş Aldatmaz**

Nê rojan de yew kitab bi nameyê "Kurmancca İle Karşılaştırmalı Kırmancca/Zazaca Dilbilgisi" weşaniya. No kitab hem seba kirmancan hem zî seba kurmancan eserêko zaf muhîm o. Kitab, zaf persanê bêcewaban rê biyo cewab. Cewabê persanê ma yê nimiteyan dayo. Êdî ma zî şikîme (şênî) bi eserode niyanên bivejîme verê her kesî û bi nê kitabî cewabê persanê ziwanê xo bidîme. Ma waşt ke wayîrê nê eserê muhîmî Mamosta Malmîsanijî de eserê ey ser o qisey bîkîme. Ey zî zerriya ma nêşikite û cewabê persanê ma day. Ma ey rê zaf sipas kenîme û ey rê weşiye wazenîme.

-Mamosta, kitabê to yo newe (Kurmancca İle Karşılaştırmalı Kırmancca/Zazaca Dilbilgisi) vejiya, to rê û ziwanê ma rê xeyrên bo. No kitab hetê gramerê kirmanckî (zazakî) ra û hetê pêveronayîşê kirmanckî û kurmanckî ra eserêko tewr hîra yo. Ma winî fikiriyenîme ke no eser cewabê zaf persan dano. Ti se vanî? Heta nika kitabî ser o senê reaksiyonî estê? Reaksiyonê eleqedaran senîn

Berxudar bîn. Kitab hema (hîna) newe vejiyayo. Zaf vila nêbiyo. Şima zanî, kitabê gramerî her kesî eleqedar nêkeno. Kesê ke wazenî rastnuştiş û rastqiseykerdişî bimusî (bander bibî), ê eleqedar benî. Kesê ke şênî (bese kenî) kirmanckî biwanî û binusî zî xora zaf tay î. Şarê ma ameyo asimîlekerdiş û ziwanê xo ra dûrî kewto. Aye ra eleqedarê ziwanî tay î.

Reyna (fina) zî tayê wendekar û mamostayî eleqedar bî, kitab wend, vila kerd; tayêne fikrê xo vatî yan zî nuştî. Hepisxaneyan ra çend kesan wendo, ê eleqedar bî. No zî çiyêko balkêş o.

**-To kitabê xo de zaf bi detay qalê seyyewbînaniya her di lehçeyan kerdo. Merdimî ke sey teorîkî tey niyada, rasta zî her di leyçeyî zaf nêzdiyê yewbînan ê. Labelê pratîk de, fehmkerdena her di lehçeyan de zoriye esta. Eynî wext de mabênê fekanê kirmanckî de zî ferq esto û fehmkerdene de zoriye esta. Krîterê ziwanê xoserî û yê lehçe çik o? Fehmkerdiş bi xo tena yew krîter o?**

Ziwannasan ferqê lehçe û ziwanî ser o zaf munaqeşeyî kerdê. La çi heyf ke na babete (behs) de krîterê qetî çin î. Na babetêka derg a. Eke ez zaf bi bilmî vaja, çiyêko balkêş o yo ke, zafê ziwannasan vanî peynî de tayînkerdoxê tesbîtkerdişê lehçe û ziwanî faktorê sosyo-polîtîk yan zî polîtîk î. Sosyo-lenguîstîk, faktoranê cemaatkî (sosyal) û polîtîkan ser o vindeno. Bêguman seba tesbîtkerdişê lehçe û ziwanî, ganî merdim faktoranê polîtîkan tena ser o ney, hem faktoranê ziwanî/ziwannasî hem zî cematkî ser o vindo.

Kitabê xo de ez eynîbiyayîş, pêmendiş û ciyayiya kurmanckî û kirmanckî ser o vindeta. Zaf babetanê gramerî de eynî yê, yan zî yewbînî ra nêzdî yê. Tayê babetan de zî ciya yê. Labelê qiseykerdiş de yew kurmanc/e û yew kirmanc/e yewbînî ra fehm nêkenî yan zî bi zehmetî fehm kenî. Heta, miyanê kirmancan bi xo de kesê ke mintiqayanê ciya-ciyayan ra bî, ge-ge yewbînî ra fehm nêkenî yan zî weş fehm nêkenî. Mesela kirmanckiya Dêrsimî, Çewlîgî, Sêwregi, Modan/Motkan bifikirî. Mensûbê nê mintiqayan beno ke yewbînî ra fehm nêkî yan zî weş fehm nêkî. Mi bi xo zaf rey diyo, gama ke televîzyon de yew spîkerê dêrsimijî yan zî çewlîgijî bi fekê mintiqaya xo qisey kerdinê, tayê goşdaranê kirmancan yê mintiqayanê bînan vatinê "ez fehm nêkena" yan zî "ez fom nêkon." Eynî çî miyanê kurmanckî bi xo de zî esto. Beno ke yew kurmancê/a behdînanî û yew kurmancê/a Mereşî qiseykerdişê yewbînî ra fehm nêkî yan zî weş fehm nêkî. Yew kurdê (kurmancê) Diyarbekir û Silêmanî zî beno ke qiseykerdişê yewbînî ra fehm nêkî la her di zî kurdkî qalî kenî. Kes nêvano kurmanckî û soranki di ziwanê ciya yî.

Ziwananê bînan de zî no problem esto. Mavajî yew erebê/a yemenî û yew erebê/a cezayîrî qiseykerdiş de yewbînî ra fehm nêklenî. La ziwanê her diyan zî erebkî yo, kes nêvano nê di ziwanê ciya yî.

Eksê ney zî esto, mavajî kesê ke swêdkî (isveçkî) û norweçkî qisey kenî, yewbînî ra fehm kenî la nê di ziwanê ciya hesibiyênî. Kesê ke sirbkî, xirwatkî, boşnakkî qisey bikî, yewbînî ra fehm kenî la ewro, nê, hîrê ziwanê ciyayî hesibiyênî.

Nê nimûneyan ra zî fehm beno ke tena krîterê fehmkerdişî, seba ciyahesibnayîşê ziwanan bes niyo.

Semedo ke dewlete nêverdayo ziwanê ma bibo ziwanê perwerdeyî û îdarî û ziwanê ma standardîze nêbiyo, wayîrê lehçe û fekanê kurdkî yewbînî fehm nêkenî yan zî weş fehm nêkenî. Goreyê fikrê mi, eke ziwanê ma bibo ziwanê perwerdeyî û standardîze bibo, wayîrê lehçe û fekanê kurdkî yewbînî ra hîna weş fehm kenî.

-Seke to kitabê xo de zî zaf ca do bi ci, mabênê mintiqayan de vuriyayîşê vengan esto. No vuriyayîş hem kirmanckî de hem zî kurmanckî de eynî vengan de biyo. Mesela vengê "j", "c" û "z"yî mintiqa ra bi mintiqa vurîno. Ge-ge kî eynî mintiqa de no vuriyayîş esto. Mavajî çekuya "roj" mintiqayan de sey "roz", "roj û "roc" yena vatene. Gruba Vateyî, nê vengan ra "j" sey standardî qebul kerdo. Yanî sey roj, laj, dej labelê tayê çekuyan de zî "z" qebul kerdo. Mesela "zî" û "jî" ra zî "zî" sey standardî yo. No durum sey nakokî nêaseno? Ti çi fikiriyenî? Çiyode bîn îlawe bikerî, mesela hetê Dêrsimî de her di vengî kî seba eynî çekuye yenê vatene.

Mîsal, "O, roza çarşemiye de ame" û "O, a rojî ame." Yanî vuriyayîşê "z" û "j"yî niya zî beno. Mîsalêda bîne, "Dezê zerê mi ez werdûne." "Derdê dejî nîno ontene." Mamosta, kirmanckî de qeydeyî zaf ê. Ma bi nê qeydeyan se kenîme?

Goreyê meylê Grûba Xebate ya Vateyî, çekuyanê kirmanckiyanê ke mintiqayanê ciyayan de bi nê hîrê venganê ciyayan (J-C-Z) vejiyênî ra, formê bi vengê "J"yî tercîh biyo. Mavajî lajek/lacek/lezekî ra lajek tercîh biyo. Labelê "zî"/"jî", di formî yê (Z-J). Formê hîrêyine yê bi "C"yî (yanî "cî"), hema hema ke nêmendo. Yanî "qayde"yo ke şima behs

kenî, seba çekuyanê bi hîrê vengan o (J-C-Z). Çiyêko bîn zî, nê qaydeyî û meylî mutleq niyê, îstîsnayî zî estê.

Persa roze-rojî, dez-dejî babeta fonolojî ya. Kirmanckiya Dêrsimî de no qayde esto: Eke vengê "Z"yî dima vengê "Î" ame, no "Z" vurîno, beno "J." Yanî:

roz + î --rojî

dez + î --dejî.

No qayde seba fekanê bînanê kirmanckî niyo.

Rast a, qaydeyî zaf î. Ma ganî qaydeyanê ziwanê xo bimusî. Ziwananê bînan de zî qeydeyî zaf î. Zehmetiya kirmanckî a ya ke, standardîze nêbiya, ferqê mintiqayan zaf î.

-Mamosta nika ma wexto ke ewniyenî nê mîsalan ra; A senîn a? / O senîn o? / Dîlan ti senîn a? / Roşan ti senîn î/ê? Ma fehm kenê ke cîniyan de "a" nêbediliyeno. Labelê wexto ke ma yew camêrdî ra pers kend, "o" beno "î/ê." Gelo na mîsale de "î/ê" manaya zafhumariye de yo? Yanî seba rêzdariye sey zafhûmarî ameyo vatene yan?

Ney. "Î"/"ê"yê ke şima behs kenî, manaya zafhûmariye de niyê. Nê kopula yê (tirkî de „lêkera paşgo"). Kurmanckî de zî na "î" esta.

**Mesela:**

Ti kurd î? / Tu kurd î? (Kirmanckî).

Tu kurd î? (Kurmanckî)

Eke zafhûmar bibo, wina vajiyêno:

Şima kurd î? (Kirmanckî).

Hûn kurd în? / Hûn kurd in? (Kurmanckî)

Seke aseno, kurmanckî de seba zafhûmarî "în"/"in" o, kirmanckî de "N" vîndî biyo, mendo "Î." Yanî herçiqas ke kirmanckî de ewro hem seba kesê yewhûmarê diyine hem zî zafhûmarê diyine "Î" vajiyo zî eslê xo de nê ciya yî. Kurmanckî de na ciyayî hîna weş asena.

**-Mamosta, tayê çekuyî ziwananê bînan ra kewtê ziwanê ma, sey heme ziwanan la tayê kesî nêwazenê ke ma nê çekuyan bixebitnîme. Wazenê ke herinda nê çekuyan de çekuyan bivirazîme. Eke nêviraştê zî kurmanckî ra bigîrîme. Ti çi fikiriyenî?**

Çekuyê ke kirmanckî de estê, ma înan tercîh kenî. La eke kirmanckî de çin bî, di alternatîfî estê: Yan ma ê çekuyanê xerîban ke ziwanê ma de estê xebitnenî (gurênenî) yan zî herinda înan de çekuyanê neweyan virazenî.

Ganî (gerek) merdim babeta viraştişê çekuyan de zaf hesas bo. Ganî her kes çekuyan nêvirazo. Şaranê bînan ra biewnî (niyadî), nê karî ziwannasî kenî, her kes çekuyan nêvirazeno. Mesuliyeta nê karî zaf a. Tayê merdimî çekuyanê xeletan virazenî, nê çekuyî vila benî, dima rastkerdişê înan zaf zor beno. Kurmanckî de zî çekuyê ke xelet viraziyayê zaf î. Na babete zanayîşo zaf û mesuliyet wazena. Viraştişê çekuyan de ganî merdim leze nêko. No kar ganî tedrîcî bibo. Eke ma hema ewro, yew rey de çekuyanê xerîban ziwanê xo ra vejî, ziwan nêno fehmkerdene, wendox û nuştox ziwanî ra serd beno; no zirar dano ziwanê ma.

Goreyê fikrê mi wa viraştişê çekuyan xelet nêbo, wa erey (herey) bo. Ziwan de çiyo muhîm o yo ke strukturê ziwanî, viraştişê cumle (sentaks) rast bo. Eke viraştişê cumle bixeripiyo (biherimiyo), ziwan qalibê xo ra vejiyêno, tehmê ziwanî nêmaneno. Çekuyî ewro xerîb zî bibî, merdim şêno meşte înan virazo.

**-Mamosta, ma zanenîme ke ti zaf xebitiyenî û seba roportajî wextê to tay o. Ma to**



**rê zaf sipas kenîme ke to wextê xo yo delalî da bi ma û cewabê persanê ma da. Ma zaf derg nêkîme, ti seba wendoxan sey qiseyê peyênî wazene çi vajî?**

Eke ma ziwanê xo weş nêzanî, kurdbiyayîşê ma de, kirmancbiyayîşê ma de kêmane esto. Eke na babete de kêmiya ma esta, ganî ma bi xo na kêmiye temam bikî. No temamkerdiş zî bi xebate (karkerdiş) beno, xovero (xo bi xo) nêbeno.

# Malmîsanij

Malmîsanij 1952 de yew dewa Pîranî de maya xo ra bî. Wendişê xoyo verên û mîyanên Kurdîstan de, unîversîte Anqara de qedênay. Dima heşt serrî Kurdîstan de malimîye kerde. Mabênê serranê 1975 û 1981î de semedê kurdîye ra hîrê rey dekewt hepisxane. 1982 de welat ra vejîya. Unîversîteya Sorbonne (Parîs) û Unîversîteya Uppsala (Swêd) de qismê ziwananê îranî wend. Unîversîteya Linköpingî de qismê perwerdeyî de wend. Swêd de Unîversîteya Göteborgî de masterê xo temam kerd.

Malmîsanij hîna zaf bi lehçeya kirmanckî (zazakî) û tirkî nuseno. Ehmedê Xasî û 'Usman Efendîyê Babijî ra pey heta 1970 welat de kirmanckî nênusîyabî. Malmîsanij keso tewr verên o ke serranê 1970 de welat de kirmanckî nuşto. Ey û tayê hevalanê xo 1979-1980 de Tirkîya de kovara Tîrêje vete. Nêmeyê na kovare kirmanckî nêmeyê aye zî kurmanckî (kirdaskî) bî. Ferhengê verênê kirmanckî Malmîsanijî hazir kerd û 1987 de neşr kerd. Ey farişkî û tirkî



ra tayê hîkayeyî zî tercumeyê kirmanckî kerdî. Reya verêne ey Mewlidê Ehmedê Xasî û Usman Efendîyê Babijî herfanê erebkî ra çarnayê herfanê latînkî ser û nê her di şaîrê kirmancan bi ma dayê naskerdene.

Heta ewro nizdî pancas rojname û kovaran de, bi seyan nuşteyê Malmîsanijî vejîyay û ey nê kovaran de redaktorîye kerde: Tîrêj (Îzmîr), Hêvî (Parîs), Armanc (Stockholm), Çarçira (Stockholm), Wan (Stockholm), Çira (Stockholm).

O demêk Swêd de sereke Komeleya Nuştoxanê Kurdan bi. Nika serredaktorê kovara Vateyî yo. Tayê kitabê ey tercumeyê îngilizkî, erebkî, kurdkîya başûrî (soranî) û kurmanckî; tayê şîîrê ey zî tercumeyê îngilizkî, franskî û swêdkî bîyê. Heta ewro nê kitabê Malmîsanijî neşir bîyê:

**Bi kurdkî (kirmanckî û kurmanckî)**

-Ferhengê Dimilkî [Zazakî]-Tirkî, Uppsala, 1987

-Herakleîtos, Uppsala, 1988

-Folklorê Ma ra Çend Numûney, Bälinge, 1991

-Ferhengekê Kirdkî-Pehlevkî-Kurmanckî, Stockholm, 1997

-Pîre û Luye, Stockholm, 2004

-Rindê Kincan Xo ra Dana, Stockholm, 2004

-Rindê Heywanan Nas Kena, Stockholm, 2004

-Gotibûn ku. . ., Istanbul, 2006

-Mi Şêx Seîd Dî, Weşanxaneyê Vateyî, Îstanbul 2009

**Bi tirkî:**

-Yüzyılımızın Başlarında Kürt Milliyetçiliği ve Dr. Abdullah Cevdet, Uppsala, 1986

-Said-i Nursi ve Kürt Sorunu, Uppsala, 1991

-Abdurrahman Bedirhan Ve İlk Kürt Gazetesi Kürdistan sayı: 17 ve 18, Stockholm, 1992

-Bitlisli Kemal Fevzi ve Kürt Örgütleri İçindeki Yeri, Stockholm, 1993

-Cızira Botanlı Bedirhaniler ve Bedirhani Ailesi Derneği'nin Tutanakları, Stockholm, 1994

-Kırd, Kırmanc Dımılı Veya Zaza Kürtleri, İstanbul, 1996

-Kürt Teavün ve Terakki Cemiyeti ve Gazetesi, Stockholm, 1998

-İlk Legal Kürt Öğrenci Derneği Kürt Talebe-Hêvî Cemiyeti (1912-1922), İstanbul, 2002

-Diyarbekirli Cemilpaşazadeler ve Kürt Milliyetçiliği, İstanbul, 2004

-Türkiye ve Suriye'de Kürtçe Kitap Yayımcılığının Dünü ve Bugünü, İstanbul, 2006

-İlk Kürt Gazetesi Kurdıstan'ı Yayımlayan Abdurrahman Bedirhan (1868-1936), İstanbul, 2006

-Bu Kürtleri Nereden Çıkardın İsmail Beşikçi? Vate Yayınları, İstanbul 2009

-Yirminci Yüzyılın Başında DİYARBEKİR'DE KÜRT ULUSÇULUĞU (1900-1920), Vate Yayınları, İstanbul 2010, 159 sayfa

-Kürtçede Ses Değişimi, Vate Yayınevi, İstanbul, 2013, 170 sayfa

**Bi swêdkî**

-Kurdiskt författarskap och kurdisk bokutgiving: bakgrund, villkor, betydelse, Stockholm, 1998

**Kitabê ke Malmîsanijî û nuştoxanê bînan pîya nuştê:**

-Malmîsanij & Mahmûd Lewendî, Li Kurdistana Bakur û Li Tirkiyê Rojnamegeriya Kurdî-I, Uppsala, 1989

-Malmîsanij & Mahmûd Lewendî, Li Kurdistana Bakur û Li Tirkiyê Rojnamegeriya Kurdî-II, Stockholm, 1992

-M. Malmîsanij & Mehmet Uzun, Rindê Baxçeyê Kaloyî de, Stockholm, 2004

-M. Malmîsanij & Mehmet Uzun, Rindê Vana Ê Min a, Stockholm, 2004

-M. Malmîsanij & Mehmet Uzun, Rindê û Keyeyê Xo, Stockholm, 2004

-Grûba Xebate ya Vateyî, Ferhengê Tirkî-Kirmanckî (Zazakî) û Kirmanckî (Zazakî)-Tirkî, Îstanbul, 2004

-Grûba Xebate ya Vateyî, Rastnuştişê Kirmanckî (Zazakî), Îstanbul, 2005

No kitab herfanê erebkî ra transkribe kerdo û ziwanê ey sade kerdo: Celadet Âli Bedirhan, Günlük Notlar (1922-1925); Stockholm, 1995.

Na kovare seba çape amade kerde û newe ra neşr kerde: Dicle-Fırat, no: 1-8 (1962-1963), çapa newa: Stockholm, 1997.

**Kitabê eyê ke tercume bîyê:**

**Îngilizkî:**

-Malmîsanij, The Past and The Present of Book Publishing in Kurdish Language in Turkey and Syria, İstanbul, 2007

**Erebkî:**

-Bedirxanîyyû Cezîret Botan we Mehadir Ictima'atu'l-Cem'yyete'l-'Aîlîyye'l-Bedirxanîyye, Hewlêr, 1998

-El-Bedirxanîyyûn fî Cezîret Botan Wesaîqu Cem'yyete'l-'Aîlîyye'l-Bedirxanîyye, Beyrut, 1998

-El-Qewmîyye el-Kurdîyye we D. 'Ebdellah Cewdet fî Metle'î'l-Qernî'l-'Işrîn, Hewlêr, 2000

-Aîletu Cemîl Paşa el-Dîyarbekrî we Nîdalu'l-Qewmî'l-Kurdî, Hewlêr, 2007

**Kurdîya başûrî (sorankî):**

-Malmîsanij, Binemaley Cemîlpaşa Diyarbekirî û Kurdayetî, Hewlêr, 2007

-Malmîsanij, Cemîyetî Teawun we Tereqqîy Kurd û Rojnamekey, Silêmanî, 2007

-Malmîsanij, Pêgey Kemal Fewzî Bitlîsî le Rêkxirawekanî Kurd da, Silêmanî, 2007

-Malmîsanij, Civata Hêvî Telebey Kurdan (1912-1922), Silêmanî, 2007

**Kurmanckî:**

-Malmîsanij, Cemîlpaşazadeyên Diyarbekirî û Neteweperweriya Kurdî, Îstanbul, 2008



## Redkirina qedexe ya derketina kolanan

# "DMME ji prensîbên xwe dûr dikeve"

Reyhan Akgün

Parêzer Neşet Girasun û Erkan Şenses li ser navê Ömer Elçi yê ku li Cizîrê dijî, bo qedexeya derketina kolanan bê rakirin û operasyonên heremê bêne rawestandin serî li Dadgeha Mafê Mirovan (DMME) dabûn. DMME'yê piştî ku ji dewletê hincetên qedexeyan guhdar kir, daxwaza parêzeran redkir.

Li aliyê din biryarnameya veşartina cenazeyan ku hefta borî ji aliyê hikûmetê ve hate derxistin jî rastî bertekan tê. Li gor vê biryarnameyê, cenazeyên ku di nava 3 rojan de kes li wan xwedî dernekeve, wê ji aliyê şaredariyan an jî ji aliyên îdareyên mulkî ve bêne veşartin.

Parêzer Neşet Girasun di derbarê biryara DMME'ê yê got: "Ev biryar bo tedbîrê ye, ne ji bo serlêdana me ya sereke ye. Dadgeh dibêje wê li ser serdana me ya sereke bi girîngî bisekinin. Bi vê biryarê jî dadgehê du rê vekirî hiştiye. Bi delîlên nû em dikarin serî li DMME'ê bidin. Mahkemê ji bo sererastkirina şert û mercan jî hin pêşniyaran li hikumetê kir."

Girasun destnîşan kir ku ev serdan ya yekem e û wiha axivî: "Me bi îddîa ya ku Dadgeha Desturê biryarek erênî nade serî li DMME'ê da û wan jî serdana me qebûl kir. Ger ku heta rêyên navxweyî yê hiqûqa Tirkiyê neqedin mîrov nikare serî DMME'ê bide. Bi qebûlkirina vê serdanê jî derket holê ku Dadgeha Desturî di derbarê qedexekirina derketinên kolanan de nikare biryarek bi rêk û pêk bide." Girasun diyar kir ku ewê serdana xwe ya sereke dûbare bikin û got ku ev biryara DMME'ê neyê wateya redkirinê: "Serdana me rednekirin û ji Hikumeta Tirkiyeyê jî parastin xwestin. Ger ku di delîlan de guherînek çêbibe, em dikarin serî dîsa li DMME'ê bidin. Em li benda encama serdana xwe ya sereke ne."

### "DMME ji prensîbên xwe dûr dikeve"

Serokê Baroya Şirnexê Nuşirevan Elçi jî di derbarê biryara DMME'ê de destnîşankir serîlêdana wan ji ber kêmasiya delîlan hatiye redkirin. Elçi diyarkir ku ev biryara dadgehê xelet e û li gorî prensîbên qanûnên gerdûnî divêya serlêdana wan bihata qebûlkirin. Elçi bal kişand ser redkirina daxwaza wan û got: "Mixabin li gorî parastina Tirkiyê wekî ku tu dane tuneye û DMME'ê jî li ser nebûna daneyan ev biryar red kiriye. Lê rêya ger ku pêşketineke din çêbibibe, careke din serî lêbidin vekirî hiştiye. Ger ku di vê pêvajoyê de binpêkirinên mafên mîrovan çêbin careke din wê serlêdanê binirxînin." Elçi anî ziman ku ew nikarin karê xwe yê parêzeriyê û karê baroyê bikin û got: "Parêzerên Baroyê û hemû parêzer ji ber ku nikarin alîkariya hiqûqî bidin xelkê, serî li DMME'ê dane û li benda biryarê ne. DMME di biryarên xwe yên dawîn de helwestek neyînî nîşan dide. Ji ber vê jî ji prensîbên xwe dûr dikeve."

### Biryarname ya veşartina cenazeyan

Di derbarê talîmatnameya veşartina cenazeyan de Parêzer Ercan Kanar jî agahi da BasNûçe'yê û got ku ev talîmatname li dijî destura Tirkiyeyê û peymanên navnetewî yê. Ercan Kanar ragihand ku li gor xala sêyem a Peymana Cenevreyê û li gor Protokola 1977'an ya benda duyem di şerên navxwe de divê kesên sivîl, jin, zarok, sewal û cih nebin armanc. Xweza, şûnwarên raya giştî bêne parastin û di şer de çekên giran û înfaz neyên kirin, darizandin li gor mafên mirovan bên kirin. Kanar di dirêjahiya axaftina xwe jî de bal kişand ser rewşa qanûnên navdewletî û wiha derbirî: "Li gor wan xalan îşkence û darizandina ne rast wek sûc û binpêkirina mafê mirovan tê qebûlkirin. Li gor statuya Dadgeha Cezayê ya Navnetewî û Statuya Yugoslavyayê û li gor Statuya Romayê veşartina cenazeyan divê neyê astengkirin. Li gor Statuya Romayê astengkirina veşartina cenazeyan li dijî mafê mirova wek sûcekî mezin tê dîtin. Dewlet ditirse ku cenazeyên kurdan bide malbatên wan."

Parêzer Kanar anî ziman ku talîmatname delîleke binpêkirina mafên mirovan e ku divê cenaze li gor baweriya olên xwe bêne veşartin û wiha domand: "Tu welat nikare vî mafî binpêbike û divê ev maf neyê binpêkirin. Ev li dij yasayên navnetewî ye."

### "Tirkiye polîtikaya şer bikartîne"

Parêzer Kanar destnîşan kir ku bi vê talîmatnameyê xalên Destûra Tirkiyeyê yên; 2, 5,12, 13, 15, 20, 24, 26 û xalên Peymana DMME'ê yên; 3, 8, 9, 10 û 14. têne binpêkirin û destnîşan kir ku bi bi vê birnameyê nijadperestî tê kirin û wiha got: "Li gor Peymana DMME'yê bi vê biryarnameyê mafê mirovan tê binpêkirin û ji bo îptalkirina wê jî divê serî li Dadgeha Îdareyê bê kirin. Ger ku Dadgeha Îdarê wê îptal neke, rê vedibe ku serî li Dadgeha Desture bê dayîn û ji wir jî encam dernekeve mirov dikare serî li DMME'ê bide. Ez bawer im wê DMME Tirkiyeyê mehkûm bike." Li gel vê yekê Kanar diyar kir ku bingeha vê qanûnê tûne ye û wiha pê dê çû: "Ev sûc hem li dijî mirovahiyê û hem jî binpêkirina hiqûka şer e. Li Tirkiye yê ji dêlva polîtîkaya siyaseta demokratîk politiya şer tê bikaranîn."

> Daxwaza Ömer Elçi yê ku li Cizîrê dijî, bo qedexeya derketina kolanan bê rakirin û operasyonên heremê bêne rawestandin ji aliyê Dadgeha Mafê Mirovan hat redkirin. Li aliyê din biryarnameya veşartina cenazeyan ku hefta borî ji aliyê hikûmetê ve hate derxistin jî rastî bertekan tê. Li gor vê biryarnameyê, cenazeyên ku di nava 3 rojan de kes li wan xwedî dernekeve, wê ji aliyê şaredariyan an jî ji aliyên îdareyên mulkî ve bêne veşartin.

Di derbarê biryara DMME'ê de jî parêzer Ercan Kanar destnîşan kir ku ji ber peywendiyên nav dewlatan de DMME'ê di vê biryarê de helwestek zelal nîşan nedaye û wiha got: "DMME'ê bi vê biryarê rê ji serdanek nû re vekirî hişt. DMME'e biryarên wiha zêde nade û serdana duyemîn teqez qebûl nake. Lê li vir dibêje; 'ger ku ev pirsgirêk bidomin hûn dikarin dîsa serî li dadgehê bidin.' Bi biryara duyem jî rê li ber serlêdana sereke tê vekirin."

### "Cihê canezeyan nayê zanîn"

Hevşaredarê Şirnexê Serhat Kadırhan di derbarê cenazeyê kuştiyên şer de got ku piştî


Ercan Kanar


Neşet Girasun



Nuşirevan Elçi

derxistina vê biryarnameyê Taybet İnan jî tê de çend cenaze ji aliyê dewletê ve hatine veşartin. Kadırhan wiha axivî: "Niha cihê wan cenazeyan nayê zanîn. Dewlet bê merasîma olî cenaze veşart. Ji bo cihê cenazeyan bê zanîn û li gor merasîmên olî bêne binaxkirin, malbatan xwest ku şaredarî cenazeyan veşêre. Heta niha me 12 cenaze veşartin. Me bo wan cihek amade kir, cihên ku hatine veşartin ji tê zanîn. Dema ku şert û merc baş bibin malbat bixwazin dikarin cenazeyên xwe bibin li cihekî din veşêrin. Kadirhan destnîşan kir ku talîmatnameya cenazeyan, talîmatnameya şer e û ne li gor hiqûqa navnetewî ye û ne jî li gor biryarên wan e." Kadırhan anî ziman ku berê cenaze 15 roj bo eşkerekirina nasnameyên wan dihatin sekinandin û wiha got: "Bo ku xwediyê wan bêne dîtin û cenaze 15 roj disekinîn. Ger ku xwediye wan nehata dîtin şaredarî bi awayekî eşkere û bi qeyd wan cenazeyan vedişartin. Bi talîmatnameyê niha piştî 3 rojan amirên mûlkî dikarin van cenazeyan veşêrin. Niha nayê zanîn ku ew canaze li kuderê hatine veşartin. Tu qeydên nayên wan nîne û ev pêkanîn dijî mirovahiyê ye."

# Kurdî jî tevlî TED-Ed'ê bû




**Rêzan Karwan**

> Organîzasyona TED Ed'ê di sala 1984'an bi armanca belavkirina ramanan hatiye avakirin û li bajarên cuda cuda yên cîhanê di warê zanîstî, darayî, pirsgirêkên gerdûnî de konferansan pêk tîne û piştre jî vîdeoyên wan li ser malperên civakî belav dike. Vîdeoyên TED-Ed'ê ku di gelek waran de zanyariyên girîng didin û ji hêla milyonan ve tên temaşekirin, ji aliyê du ciwanên kurd ên dildarên kurdî ve êdî bi jêrnivîsên kurdî jî tên amadekirin.

TED-Ed projeyeke ku bi anîmasyonê dersên zanistî, çandî, dîrokî çêdike û zimanê wê bi giştî îngilîzî ye. Û ev vîdeo ji aliyê kesên xwebexş ve ji bo gelek zimanan tên wergerandin. Her du ciwanên dildarên zimanê kurdî Mehmet Sıddık Dilek û Hekim Atay jî ev vîdeoyên ku li seranserê cîhanê ji aliyê milyonan ve tên temaşekirin û şopandin, wergerandin kurdî jî û êdî kurd jî dikarin van vîdeoyan bi zimanê xwe bişopînin. Di derbarê vî karê xwe de, ciwanên xwebexş ji BasNûçe'yê re axivîn û ragiahandin ku herkesê ev vîdeo werdigerandin zimanê xwe û ew dişopandin, wan jî got ku çima ev ne bi zimanê kurdî jî bin û dest bi xebata xwe kirin.

**"Armanc pêşvebirina zimanê kurdî ye"**

Mehmet Sıddık Dilek ku ji navçeya Nisêbîna Mêrdînê ye û niha li Zanîngeha Kocaeliyê, beşa bijîşkiyê dixwîne, diyar kir ku wî di dema zaningehê de dest bi xwendin û nivîsandina kurdî kiriye û destnîşan kir ku wî û hevalê xwe du sal bûn ku vîdeoyên Ted-Ed'ê dişopandin û bi mebesta pêşvebirina zimanê kurdî, bi taybetî jî di aliyê zanistî de, dest bi vî karî kirin e. Dilek balkişand ser rewşa zimanê kurdî û wiha axivî: "Mixabin ji bo ku perwerdehiya bi zimanê kurdî tune ye, zimanê kurdî jî weke zimanên din ne xwedî derfetên zêde ye. Ji ber wê yekê em carînan dijwariyan dikşînin. Heta niha ji 30 vîdeoyê behtir bi jêrnivîsa kurdî vîdeo li ser qe nala Ted-Ed kurdish-kurmancî me parve kirine û ji 5 hezar caran bêhtir hatine temaşe kirin."

Dilek amaje pê kir ku dema vîdeo dihatin weşandin herkesê bi zimanê xwe jêrnivîs amade dikirin û li vîdeoya bar dikirin û me jî xwest bi zimanê xwe jêrnivîsan li van vîdeoyên ku zanyariyên girîng didin bar bikin. Dilek axaftina xwe wiha domand : "Piştî ku em ji bo vîdeoyekê jêrnivîsê amade dikin, em wê jêrnivîsê ji qenala Ted-Ed'ê re dişînin. Ji xeynî wê em heman vîdeoyê li ser qenala Youtubê ya Ted-Ed Kurdish-Kurmancî jî bi jêrnivîsa kurdî bar dikin. Di encamê de heman vîdeo bi jêrnivîsa kurdî, hem li ser qenala Youtubê ya Ted-Ed Kurdish-Kurmancî û hem jî li ser qenala Ted-Ed'ê tê bar kirin. Di pey wê re, em vîdeoyê li ser hesabê Ted-Ed Kurdish yê facebook û twittirê jî parve dikin."

**"Divê kurdî di warê zanistî de bê pêşvebirin"**

Mehmet Sıddık Dilek, li ser destpêkirina xebata xwe jî destnîşan kir ku di Tîrmeha 2015'an de wî û hevalê wî Hekim Atay bi hev re dest bi nivîsîna jêrnivîsên kurdî kirin û got ku bi domandina demê re hin hevalên din jî tevlî xebatên wan bûne û ji bo redaksiyon û rastnivîsê mamosteya zimanê kurdî, Ronya Bewran alîkariya wan dike. Dilek ev tişt gotin: "Di serî de em du heval bûn. Dûvre ji Zanîngeha Hacettepeyê hevalê Bayram Alkan û ji Amedê Rênas Xendekî, ji bo amadekirina jêrnivîsên vîdeoyan alîkariya me kir. Ji bo redaksîyonê û rastnivîsê jî mamosteya zimanê kurdî Ronya Bewran alikariya me dike. Çend hevalên din jî dê dest bi wergerê bikin. Em li benda wan in ku bi awayekî çalak tevlî me bibin. Divê zimanê kurdî di warê zanistî de jî pêş ve biçe"

**"Me hinek zahmetî kişand"**

Dildarê zimanê kurdî Dilek, anî ziman ku astengî ji bo kurdî bi giştî di zimanê zanistî û teknîkî de derdikevin. Ji ber ku termên teknîkî bi awayekî berfireh belav nebûne û nehatine bikaranîn. Dilek got ku vîdeo li ser qanala Ted-Ed'ê li ser mijarên cuda yên wek zanist, çand, ziman û dîrokê tên weşandin. Û axaftina xwe wiha berdewam kir: " Em jêrnivîsa kurdî amade dikin û li wan bar dikin. Mijara vîdeoyan cihereng e. Ji bo em dengê xwe bigihinîn cîvaka xwendevanên kurdî me hinekî dijwarî kişand."

Her wiha Dilek xwest ku xwînerên kurdî xebata wan bişopînin, belav bikin û yên ku dixwazin ku tevlî xebatên wan bibin deriyê wan her tim vekiriye. Di derbarê pêşerojê de jî Dilek anî ziman ku dibe ev xebata wan ji bo vekirina malpereke ji bo jêrnivîsên kurdî bibe destpêk. Dilek wiha axivî: "Dibe ku di pêşerojê de malpereke ku ji bo fîlm û rêzêfîmên biyanî jêrnivîsan amade dike, bi hevalên ku tevlî me dibin re amade bikin û kurdî di vî warî de jî bi pêş ve bibin. Mînak, heke gelek heval di vê xebatê de cih bigirin dibe ku em jî weke dvixplanet.com a ku tê de jêrnivîsên bi tirkî ji bo fîlm û rêzefîlman peyda dibin, em jî dvixplanet.com bi kurdî avabikin û valahiyekê di vî warî de dabigirin."

Mehmet Sıddık Dilek, di dawiya axaftina xwe de, da xuya kirin ku herkesek roman, kovar û wêjeyê naxwîne û naşopîne lê herkesek fîlm û rêzefîlmên xwecih û biyanî dişopîne û temaşe dike. ji ber wê yekê xebata ku ew dikin û ên ku di vî warî de bên kirin, ji bo pêşvebirina zimanê kurdî gelekî girîng in.


Mehmet Sıddık Dilek

**"Kurdî pir dewlemend e"**

Hekim Atay jî di derbarê projeya xwe û xebatên xwe de ji BasNûçe'yê re axivî û ragihand ku dema ku fêrî xwendin û nivîsandina zimanê xwe bû, nirxê û dewlemendiya zimanê xwe zane. Hekim Atay, ji bajêrê Wanê ye û niha li Zaningeha Kocaeliyê beşa bijîşkiyê dixwîne. Û her wiha çîrokên kurdî jî dinivsîne.

Hekim Atay, diyar kir ku zimanê kurdî ji ber astengiyan ji gel dûr diket û wan jî xwest ji bo pêşvebirina zimanê kurdî xebatekê bikin. Atay got, gelek riyên xebatan hebûn lê ya herî ku tê zanîn û berbelav e internet bû, me jî vîdeoyên Ted-Ed'ê ên ku di derbarê gelek tiştan de û di warên cuda de agahiyên girîng didin, bi binnivîsên kurdî pêşkêşî xwîner û temaşevanên kurd kirin.

**"Pêwistî bi dilsozî û dildariyê heye"**

Her wiha Atay, balkişand ser pêwistiya jêrnivîsên kurdî ên fîlm û rêzfîlman û ragihand ku heke derfetên wan berfirehtir bibin û piştgirî bê dayîn ew ê ji bo ku zimanê kurdî di her warî de cîh bigire xebatên xwe bi awayekî rêk û pêktir bidomîn in û malperên girîng di vî warî de bikin.

Li hêla din Hekim Atay da zanîn, ew dizanin ku niha di gelek waran de hewcehiya kurdî, zêdetir bi xebat û pêşvebirinê heye û hinek hevalên dilsoz mil bidinê ew ê xebatên gelek baştir bikin. Atay wiha axivî: "Ji bo pêşvebirina zimanê kurdî gelek xebatên din hewce ne. Ji bo ku xebat bên meşandin pêwistî bi hevalên dilsoz û dildar heye." Atay di dawiya axaftina xwe de anî ziman ku zimanê kurdî di gelek waran de li gor zimanên din paş de maye û divê demildest xebat bên meşandin ku kurdî di warên ku tê de kêm e, cihê xwe bigire û wiha pê de çû: "Ev xebata ku em dikin gaveke biçûk e. Di warê zanistiyê de kurdî hinekî kêm maye û ev bi awayekî berbiçav derdikeve holê. Divê em gelê kurd înterneteke bi zimanê kurdî jî ava bikin da ku zimanê me di pêşerojê de, zêdetir nekeve tengasiyê û astengiyan derbaz bike."

Organîzasyona TED Ed'ê di sala 1984'an bi armanca belavkirina ramanan hatiye avakirin û li bajarên cuda cuda yên cîhanê di warê zanîstî, darayî, pirsgirêkên gerdûnî de konferansan pêk tîne û piştre jî vîdeoyên wan li ser malperên civakî yên TED' Ed'ê belav dike. Ev vîdeoyên ku tên belavkirin ji 18 xulekan kurttir in. TED Ed ji tîpên ewil yên peyvên Technology Entertainment û Design pêk te.

# Mîratên mirovahiyê bi kurdî

Murat Özdemir

Di demên dawîn de ji gelek berhemên giranbiha bi zimanê kurdî jî têne weşandin. Ji bilî wêjeyê, di gelek waran de kurdî di nava geşedaneke girîng û giranbiha de ye. Komeleya Akademiya Sînemeyê ya Rojhilata Navîn (KAS-RN) jî 11 berhemên giring vergerand kurdî.

Li van geşedanan, geşedaneke giranbûha ya din jî zêde bû. Yek ji van yên girîng û giranbûha xebata projeya bi navê ku koordînatoriya wê Coşkun Doğan dike. Projeya "Zimanê Dayikê û Xebatên Çandî" di nava bernameya Navgîna Ewropa ya Demokrasî û Mafên Mirovan de, bi piştgiriya Yekitiya Ewropayê û bi mebesta ku berhemên hûnerê li zimanê kurdî zêde bike û di vî warî de valahiyekê dagire destpêkir. Armanca vê projeyê ew e ku berhemên hûnerê wergerîne zimanê kurdî û di vî warî de jî, zimanê kurdî bi pêşve bibe. Bi vê mebestê di warên sînema, şano, nîgar, muzîk diroka devkî û di warên dîtir de 11 berhemên sereke, ji zimanê wan ê resen, bo kurdî hatin wergerandin. Ji van 9 pirtûk li zaraveyê kurmancî, 2 jî li zaraveyê dimilkî hatin wergerandin û weşandin. Ev berhemên ku di warên xwe de serekene û di zimanê kurdî de wê weke çavkanî bên bikar anîn, bi saziyên çandî û rêxistinên civaka sivîl re ku li herêma Kurdistanê di warên huner, perwerde û pêşvebirina zimanê kurdî de çalak in re hatin parvekirin.

Bi serperiştiya KAS-RN, projeya, "Zimanê Dayikê û Xebatên Çandî" di 1'ê Sibata 2015'an de destpêkir. Navenda Çanda Cegerxwîn, Şaredariya Bajarê Mezin a Mêrdînê û gelek saziyên din ê Amedê beşdarî projeyê bûn û ew berhem tercûmeyî kurdî kirin. Li gel tercûmeya van berhemên hunerê Komeleya KAS-RN di warê sînema, belgefîlm û wêneyan jî de gelek karên wiha kirin.

**Berhemên hatine wergerandin**

Bi kar û xebata vê projeyê gelek berhemên girîng jî li zimanê kurdî zêde bûn. Berhemên ku di warên xwe de çavkanî ne, ji bo kes û saziyên ku di van waran de bi zimanê kurdî xebatan bimeşînin, derfetek mezin afirandiye û valahiyeke berbiçav dagirti ye.

Pirtûkên ku li zimanê kurdî (kurmancî-dimilkî) hatine wergerandin 11 heb in. Kordînatorê Projeyê Coşkun Doğan bal kişand ser projeyê û di derbarê projeye de ji BasNûçe'yê re axivî. Doğan ragihand ku pirtûka Özdemir Nutku ya "Hunera Dram-Hunerê Dramî" ku mijarên di warê şanoyê de bi awayekî sade û bi rêkûpêk vedibêje, li zaraveyên kurmancî û kirmanckî hatine wergerandin. Pirtûka "Ji Duh Heta Îro Ramana Şanoyê" ya ku; ji Yûnana Antîk heta roja îroyîn, hemû dîtin û ramanên ku der heqê şanoyê de hatine nivîsîn û bûne bizav,bi xwendevan û bi kesên ku bala wan li ser şanoyê ye bide nasîn, hatiye nivîsîn, li zimanê kurdî hate zêde kirin. "Dîroka Hunera Wêneyê" ya ku hemû qonaxên hunera wêneyê û hunera her herêmê bi wekhev hatiye bidestxistin jî, ji bo xwînerên kurd li kurdî hat wergerandin. Pirtûka "Sînemaya Bêdeng- Sînemaya Bêvenge" jî ku di warê sînemayê de berhemeke sereke ye li zaraveyên kurmancî û kirmanckî hate wergerandin. Pirtûka Paul Thompson a "Dengê Paşerojê" ku lêkolîna borîroja dîroka devkî dike û hûr li ser disekine, li zaraveyê kurmancî hate wergerandin. "Şêweyên Dîtinê" ku di warê xwe de berhemeke girîng e jî êdî bi kurdî ye. "Sînematografî" ya Blain Brown ku têgihên hîmî yên sînematografiyê, rêbaz û aliyên wê ên teknîk, bi zimanekî rewan vedibêje û her xwendevan dikare jê fêm bike jî, li kurdî hatiye zêdekirin. Pirtûka klasik a "Belgefîlm" ku li ser fîlm û çêkirina fîlman e, ji sala 1895'an û vir ve li ser dîroka çeşna belgeselê disekine jî li kurdî hate wergerandin. "Afirandina Karakterekê" ya Stanislavski jî ku di warê xwe de berhemeke girîng e li kurdî hatine zêdekirin.




**Xebatên atolyeyê û panel**

Her wiha Doğan amaje bi wê yekê jî kir ku wan karên atolyeyî jî birêvebirine. Li hêla din jî Doğan eşkere kir ku ji ciwanên ku di warên hunerê yên cuda cuda de û di qada perwerdehiya zimanê kurdî de xebatan dikin, 8 xebatên atolyeyî û ji bo wergera zimanê kurdî bi beşdariya wergêran, 2 xebatên atolyeyî hatine kirin. Doğan di derbarê karê wan ê atolyan jî de wiha axivî: "Atolyeya Wergêrana bo Kurdî, Atolyeya Wêne, Atolyeya Gihandina Perwerdekarê Muzîkê, Atolyeya Senaryoyê, Atolyeya Flutê, Atolyeya bi Zarokan re Fîlmê Kartonî û Atolyeya Wergerana bo Kurdî. Ji bilî xebatên atolyeyê, li ser naveroka berhemên ku li kurdî hatine wergerandin, bi beşdariya akademîsyen û lêkolîneran 6 panel hatin lidarxistin. Sempozyumeke navnetewî ya li ser pirzimanî û hunerê jî, ji aliyê vê projeyê ve hatiye çêkirin."

**"Kêmasiya çavkaniyan hebû"**

Koordînatorê projeya "Zimanê Dayikê û Xebatên Çandî" Coşkun Doğan her wiha xebatên xwe vegotin. Doğan di derbarê destpêkirina projeyê de got ku wan kêmasiya materyalan a di vî varî dît û bi rêveber û mamosteyên Konservatuara Bajêr a Aram Tîgran re biryar da ku vê valahiyê dabigirin. Doğan amaje pê kir ku ji bo birêvebirina projeyê pêwîstî bi piştgiriya aborî hebû û ew jî ji aliyê Yekitiya Ewropayê ve ku piştgiriyê dide xebatên bi vî awayî, wergirt. Doğan axaftina xwe wiha domand: "Me di warê hunerê ûpeydakirina çavkaniyan de kêmasiyek dît û me xwest ku vê kêmasiyê ji holê rakin û ji bo sazî û xwînerên kurd, ku di warên xwe de pirtûkên sereke ne, ji zimanên wan ên resen hin berhemên ku weke çavkanî bên bikaranîn dabîn kirin. Me fikrên xwe bi Akademiya Sînemayê ya Rojhilata Navîn re parve kir, wan jî pejirand û ev proje derket holê."

**"Armanca me, dabînkirina çavkaniyan bû"**

Coşkun Doğan ragihand ku projeyê, bi armanca dabînkirina çavkaniyên di warên pêşvebirina ziman û çanda kurdî, xebatên wêjeyê, warên fikrî, piratîkên kurdî de li kurdî jî bêne zêde kirin dest bi çalakiyên xwe kir. Doğan destnîşan kir ku wan di encama xebatên xwe de di nava projeyê de, di warên sînema, îano, nîgar, diroka devkî û muzîkê de 11 pirtûk li zaraveyên kurmancî û kirmanckî wergerandin. Doğan wiha berdewamî da axaftina xwe: "Ji xwe armanca me ya sereke jî ev bû. Ev ware ji ya ku me difikirî dijwartir bû. Em hem jî bo hilbijartina pirtûkan û hem jî ji bo wergerandina van pirtûkan, rastî pirsgirêkên mezin hatin. Ez dikarim bêjim ku me di warên serwextbûna zimanê kurdî û nêzîkahiya li hember termînolojiya hûnerê de jî zehmetî dîtin. Lê di encamê de xebateke baş û hêja derket holê."

Coşkun Doğan di dawiya axaftina xwe de anî ziman ku xebatên bi vî rengî, xebatên berdewamî ne û heke biryar bê girtin û piştgirî jî bê dayîn, wê xebatên wan di warên cuda de jî bidomin.

ORTADOĞU SİNEMA AKADEMİSİ DERNEĞİ

Di demên dawîn de gelek berhemên ku wek mîrata mirovahiyê tên zanîn, bi zimanê kurdî jî têne çapkirin. Ji bilî wêjeyê, di gelek waran de kurdî di nava geşedaneke girîng û giranbiha de ye. Komeleya Akademiya Sînemeyê ya Rojhilata Navîn jî 11 berhemên giring vergerand kurdî.

